

Serdozgerê Colemêrgê çi dizane?

## Naxwazim weke Ferhat Sarikaya li min bê!

Teqîna mayîna li Colemêrgê, bûyera Şemzînan a di sala 2005'an de zindî kir: Mîna bûyera Şemzînanê di nav raya giştî de goman heye ku hêzên tarî li paş bûyerê bin. Daxuyaniya Serdozgerê Colemêrgê ku da Rûdawê, van gomanan hîn xurtir dike. ▶2


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdawê bêtir dizanin




قەیسیەکانی عەزیز وەیسی

**بە سێ ڕۆژ تەواو بوون**

8 ◀

**Deutschland 1,50 Euro** | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK **Hejmar / Nr. 63** | 21 Îlon / September 2010 | **www.rudaw.net** | **info@rudaw.eu**

Tevî hemû provokasyonan, ji bo çareserkirna pirsa Kurdî li Bakur

## Gera li navberkaran dest pê kiriye?

Bûyera li Colemêrgê li aliyekî, daxuyanî, hişyarîkirin û bangên ji bo çekrawestandinê rojeva Tirkiyê û Kurdistanê dagirtine. Tevî ku van rojan bûyerên tundûtûjiyê serdest bûne, lê li aliyê din jî hinek nîşan hene ku ji bo çareserkirina Pirsa Kurd li Bakurê Kurdistanê gera li navberkaran jî dest pê kiriye. "Komisyona Aqilmendan" û banga Hevserokê BDP'ê Selahattin Demirtaş ji bo serkirdên Başûr du nîşan in. ▶2/3/4

### Bi dehezaran Kurd di 18. Festîvala Çanda Kurd ya Navnetewî li Kolnê de gihiştin hev ... ▶16



Wêne: Rûdaw

### Selahedînê Eyûbî

Serkirdekî ku hîn jî serê Kurdan li cîhanê bilind dike ▶11

### Qijika Reş

Kovareke bê serî, bê dezgeh, bê manîfesto û serbixwe ▶8

### Kurdekî Ereb

Tometbarê kuştina Serdeşt Osman kesekî Ereb derket! ▶4



00039
4 191631 701506
38
9 771869 104000
Great Britain

Serokê "Komîsyona Aqilmendan" li ser pirseke Rûdawê:

# Ti pirsgirêka ku neyê çareserkirin, tune ye!



**Mehmet Yuksel** Stenbol

Komisyona Serbixwe ya Tirkiyê ku weke "Komîsyona Aqilmendan" tê binavkirin, bi piştgiriya Weqfa Civaka Vekirî, derbarê xebat û hevdîtinên xwe yên 4 rojî de, dawiya hefteya borî li Stenbolê civînek çapemeniyê li dar xist.

Komisyona bi serokatiya Martti Ahtisaari - ku berê Serokkomarê Finlandiya bû û di sala 2008'an de Xelata Nobelê ya Aştiyê standibû - ji roja 14'ê Îlonê û pê ve li Amedê û Stenbolê çendîn hevdîtin pêkanîbû. Di axaftina xwe de Ahtisaari daxuyand ku wan li Amedê bi waliyê bajêr Mustafa Toprak, Serokê Şaredariya Mezin a Amedê Osman Baydemir, nûnerên Saziyên Demokratîk ên Sivîl û rêvebirên DTP'ya ku hatî girtin, Ahmet Turk û Aysel Tugluk re, hevdîtinan çêkiriye. Ahtisaari wiha axifî: "Wek ku di çendîn dezgehên çapemeniyê de hatiye belavkirin ez ne ji bo navberkariya pirsgirêka Kurd hatime. Ti armancek me ya wiha tune. Ew tiştên ku me li Amedê bi çavên xwe dît û bihîst, wê ji bo rapora 3. ya Tirkiyê ku komîsyona me amade dike, bên bikaranîn."

Ahtisaari bibîr xist ku komîsyona wan ji sala 1999'an û virve dixebite û derbarê endamtiya Tirkiyê ya Ewrûpayê de di sala 2004'an de raporek amade kiriye. Ahtisaari got ku wan rapora duyem jî di sala 2009'an de amade kirine û di vê raporê de bal kişandine ser pirsgirêkên ku divê Tirkiyê di rêya Ewrûpayê de çareser bike û ya herî girîng jî pirsgirêka Kurd e. Serokê Komîsyonê Ahtisaari destnîşan kir ku tena çareseriya pirsgirêka Kurd jî diyalog e. Di civîna çapemeniyê de endamên Komîsyonê yên din, Wezîrê Karê Dervê yê Hollanda yê berê Hans van den Broek, nûnerê berê yê Wezareta Karê Derve yê Avusturyayê Albert Rohan, Wezîrê Karê Dervê yê Îspanyaye yê berê Marcelino Oreja Aguirre jî amade bûn.

Ahtisaari pirsa Rûdawê ya derbarê gera wî ya li Amed û li Stenbolê ku bi rayedarên Dewleta Tirk re jî hevdîtînan çêkiribû û agirbesta PKK'ê û bûyerên dawiyê de wiha bersivand: "Gelo hêvî heye? Bi rastî em hemû xwediyê hêviyê ne. Ez 73 salî me. Ez ê heta serê salê hîn 70 rojan bigerim û hevdîtinan çêbikim. Hevalên komîsyonê jî hemû wek min in. Eger ku hêviya me tunebûya me ev karî nedikir. Erê hêvî heye. Dema ku min Xelata Nobelê stand min got ku di dinyayê de ti pirsgirêka ku neyê çareserkirin, tune ye. Em dirêjkirina agirbestê gaveke di cîh de dibînin û divê bê şert û merc be. Em li her derê heman tiştî diparêzin. Di hevdîtînan de, kesên ku em bi wan re axivîn, em nizanin ka kî xwediyê çiqaz hêzê ye, gotina kê çiqas giran e, lê her kes çareseriyeke bê çekdarî dixwaze. Li hinek deran min gelek pirsgirêkên tund û giran jî dît. Pirsgirêkên wiha li her derê dinyayê hene, lê çareseriya hemûyan jî bi diyalogê pêk tê. Em bûyerên dawî, yên ku li dijî kesên sivîl tên li dar xistin, şermezar dikin."

Musteşarê berê yê Wezareta Karê Derve yê Avusturyayê Albert Rohan jî wiha axifî: "Di vê meseleyê de gelek pêşketin derketine. Heta demeke berê gotina 'Kurd' jî nedihat bikaranîn, lê îro li Tirkiyê gelek kes dikarin bêjin ku ew hemwelatiyên Kurd in." Wezîrê Karê Dervê yê Îspanyaye yê berê Marcelino Oreja Aguirre jî pirseke di derbarê gera Amedê de bersivand û got ku ew ji gelê Baskê ye û pirsgirêkên wiha baş nas dike. Aguirre got pirsgirêk li her derê cûda ye û ji ber vê jî çareserî jî cûda dibe.

Endamên komîsyonê di dawiya axaftinên xwe da dan zanîn ku Tirkiye welatek girîng e di Rojhilata Navîn de, mafê xelkê heye ku bi zimanê xwe perwerdê û weşanê bixwaze, lê wan di hevdîtinan de ji ti kesî re pêşniyar nekirine, tenê ezmûnên xwe gotine.

## "Naxwazim aqîbeta min jî bibe wek a Ferhat Sarikaya"

**Rûdaw (Taybet) -** Piştî teqîna mayînekê li Colemêrgê ku bû sedema kuştina 9 kesan, guftûgoyên derbarê ronîkirina bûyerê bi germî dom dikin. Piştî teqînê gundiyên ku çûbûn cihê bûyerê, li wir çenteyekî leşkerî û tê de çendîn alawên bombeyan û mayînan û belgeyên ji Artêşa Tirk dîtibûn. Ev çenteyê ku gundiyan dît nedan leşkeran, lê ji bo lêpirsînê dane Dozgerê Komarê yê Colemêrgê. Rûdawê pirsên ku di raya giştî de tên kirin ji rayedarên dewletê yên ku ji ewlekariya hemwelatiyan berpirsiyar in, kir.

Waliyê Colemêrgê Muammer Turker ku roja pêşîn wek berpirsiyarê bûyerê PKK nîşan dabû, nexwest pirsên me bibersivîne û got ji ber ku bûyer di destê dozgeriyê de ye û ew ne muxatabê bûyerê ne, ew nikare ti daxuyaniyekê bide.

Bi rêya telefonê Rûdawê xwe gihand Serdozgerê Komarê yê Colemêrgê, Yener Yavuz, yê ku gundiyan çenteyê li cihê bûyerê dîtî, bi îmze, teslîmî wî kiribûn. Yener Yavuz ji Rûdawê re got ku ew ji ber bûyerê gelek xemgîn e û wiha pêde çû: "Niha lêpirsînek heye, lê ez nikarim derbarê wê de tiştek bêjim. Ji ber ku hertişt hîn nû ye. **Ji aliyê din ve, ez nikarim biaxivim, ji ber ku naxwazim dawiya min jî bibe wek a Dozgerê Wanê Ferhat Sarikaya**."



Serdozger Yener Yavuz

### Bûyera Ferhat Sarikaya

***Ferhat Sarikaya** Dozgerê Komarê yê bajarê Wanê bû. Piştî bûyera Şemzînan a di sala 2005'an de (bombekirina pirtûkxaneya Umut), Dozgerê wê demê yê Wanê Sarikaya lêpirsîn destpêkir û paşê jî gilîname amade kir. Sarikaya di gilînameyê de Fermandarê Hêzên Erdê yê wê demê Yaşar Buyukanit, Korgeneral Selahattin Ugurlu û Fermandarê Tugaya Komandoyên Çiya ya Colemêrgê Tuggeneral Erdal Ozturk wek endamên çeteyê sûcdar kiribû. Sarikaya di vê gilînamayê de herwiha daxwaz kiribû ku Buyukanit bê dadgehkirin. Lê Sarikaya ji karê xwe hate dûrxistin û vegera wî ya vî karî jî hat xedexekirin.*





## Nûçegihanê Rûdawê xelat girt



**Koln (Rûdaw) -** Nûçegihanê rojnameya me Rûdawê Zekî Ozmen Xelata Taybet a Jûriya Nûçeyên Kurdî a Xelatên Şehîdên Çapameniyê û Mûsa Anter 2010 stand.

Xelatên Şehîdên Çapameniyê û Mûsa Anter hefta borî hatin diyarkirin û li xwediyê wan hatin belavkirin. Nûçeyek Rûdawê jî ya ku di sala 2009'an de hatibû weşandin, xelat girt. Nûçeya peyamnêrê me yê Marburgê Zekî Ozmen a bi sernivîsa "Bi hezaran bûk û zavayên Kurd fêrî almanî dibin" Xelata Taybet a Jûriya Nûçeyên Kurdî a Xelatên Şehîdên Çapameniyê û Mûsa Anter 2010 stand.

Di beşa nûçeyên kurdî de herwiha nûçegihanên ANF'ê Serdar Eroglu bi nûçeya "Kevirê bi nalet yê Kêlaşînê!", di beşa tirkî de nûçegihana DIHA'yê ya Wanê Nazan Sala bi nûçeya "Bûkên firotinê", di beşa wêneyan de Paşa Îmrek, di beşa karîkatur de jî Raîf Zor xelat wergirtin. Xelat di 19'ê Îlonê de bi merasîmekê li Amedê hatin dayîn.

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî
azadKurdi@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

Abdullah Ocalan di yekemîn hevpeyvîna xwe ya ji zîndanê de:

# Eger me xwestiba me dikarî referendûmê têk bibin!



Serokê Partiya Karkerên Kurdistanê (PKK) Abdullah Ocalan ragihand ku eger wan xwestiba wan dikarî referendûmê têk bibin û ev encama niha bi dest nedihat. Ocalan herwiha got ku ev derfeta dawî ye ku ew didin Erdogan, ji bo ku ew ji bo çareseriya demokratîk a pirsgirêka Kurd pêngavan bavêje.

Abdulla Ocalan ji dema revandina wî ji Kenya, di 15'ê Sibata 1999'an de û zîndankirina wî li girtîgeha Îmralî li Tirkiyê, yekemîn hevpeyvîna rojnamevanî sazkir. Ew hevpeyvîn ji aliyê rojnamevan Ozlem Akarsu Çelik ji bo rojnameya Akşam a tirkî hatiye kirin û di hejmara roja 15'ê Îlona 2010'an de hatiye weşandin. Ozlem Akarsu Çelik diyar kir ku wê pirsen xwe bi nivîskî û bi rêya parêzeran gihandine Ocalan.

Ocalan dibêje ku ji dema ew di zîndanê de ye, wî hevdîtin bi şandiyên leşker û saziyên dewletê re pêkanîne û ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd li Tirkiyê hewl daye danûstanan bi wan re sazbike. Ev reportaj dîtinên Abdullah Ocalan ên derbarê pêşketinên dawî li Tirkiyê, meseleya referendûma destûrê û agirbesta PKK'ê ya yekalî, li xwe digir e. Rûdawê reportaj ji zimanê tirkî, ji rojnameya Akşam, wergerandiye kurdî.

**Ew çi kes in hevdîtinan bi Ocalan re saz dikin? Di wan hevdîtinan de behsa çareseriya pirsgirêka Kurd tê kirin? Gelo peywendiya agirbesta demkî ya PKK'ê bi wan hevdîtinan heye?**

**Abdullah Ocalan**: Ji roja ku ez anîme Îmraliyê, min çendîn caran digel şandên cuda gotûbêj kirine. Li destpêkê bêtir kesên ji îstixbarat û leşkerî dihatin û dixwestin gotûbêjan bi min re saz bikin. Min dixwest ez wan hevdîtinan bighînin asta danûstanan, lê di wan hevdîtinên ku di wan deman de hatine kirin ti encamekî baş berbi rêya çareserî û xizmetgihandina çareseriyê bi dest nehat. Di van dawiyan de şandeke sivîl bi min re ketine gotûbêjê, ev gotûbêjên ku ez li vir pêktînim di asta danûstanan de ne, ev hevdîtin di astekî diyarkirî de didomin.

> "Min negotiye ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd, bila danûstanan tenê bi min re bên kirin"

Eger ew çareseriyeke adil û demokratîk ji pirsgirêka Kurd re dixwazin, divê nûnerên siyasî yên Kurd weke muxatab bên qebûl kirin û danûstan bi wan re bê kirin, herwiha bi çavekî dirust li pirsgirêk binêrin. Min negotiye ku ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd divê gotûbêj û danûstan tenê bi min re bên kirin, tişta giring ew e ku di wê rê de ji aliyê dewletê ve pêngavên ciddî û rasteqîn bên avêtin. Ji bo vê jî dibe ku BDP yan PKK yan jî ez muxatab bin. Kîjan be, cudahî tune. Min digel destpêkirina proseya "Rêlêvebûna Demokratîk" kar li ser nexşerêyekê kir ji bo çawa dest bavêjin çareserkirina pirsgirêka Kurd û ji ku dest pê bikin, lê ez niha nizanim çi li wê nexşerêyê hat û li ku hatiye veşartin. Çendîn mehan min kar li ser wê nexşerêyê kir, ew berhema zehmetiya min ku 156 rûpel e, ji aliyê dewletê ve weke tune hat qebûlkirin û nîşanî raya giştî nedan. Eger çareserkirina pirsgirêkeke dîrokî ya weke pirsgirêka Kurd bixwazin, divê em digel şiroveyên saykolojî yên boriyê biguncin. Yên ku dixwazin di çareseriyê de alîkar bin, nabe alîgirî û navnîşanê wan weke pîvan bê diyarkirin. Min fêm kiriye û ez dizanim ku derbarê min de şiroveyên Kurd û Tirkan nakok in, loma ez bawerim ku divê hemû hûrbînî di ber çavan re bên derbaskirin. Ev 12 sal in min li Îmraliyê ji bo çareseriya demokratîk ji pirsgirêka Kurd re hewldaye û xwe mandî kiriye. Ji niha û şûn de jî heta ku hêza min hebe û tendirustiya min rê bide, ez ê berdewam bim.

> "Eger hevdîtin û gotûbêj bên rawestandin ..."

Piştî referendûmê, di rojên navbera 13-20 Îlonê de, wê hin tişt ron bibin. Eger heta wê demê ti guhertin û pêşketin çênebûn, ez êdî xwe naxim ber berpirsyariyê. Eger ji aliyê hikûmetê ve pêngavên diyar bên avêtin, wê demê ez ê hewl bidim rola xwe bilîzim. Eger ji nişkave hevdîtin û gotûbêj bên rawestandin û ji rê derkevin, êdî tiştek ji destê min nayê. Eger hevdîtin û gotûbêj bidomin, ez ê bi bikaranîna aqil û mantiqa xwe rolê bilîzim.

**We got Kurd, BDP û Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) wê bi rêya gotûbêjan biryar bidin ka ew çi core jiyanekê dixwazin. KCK û PKK jî wê di nav sîstema otonomiya demokratîk de cihê xwe destnîşan bikin. Kurd behsa otonomiya demokratîk dikin, lê eger ev çêbibe ew ji wê yekê ditirsin ku ji aliyê aborî ve wê ziyan bigihîje wan û navçe jî wê hejartir û ji niha tenêtir bimîne. Ji bilî vê jî hin nîgeraniyên Amerîka jî derbarê navçeyê de hene û pirseke din jî ku hertim tê kirin ew e: gelo Kurdên ku li rojavayê Tirkiyê dijîn wê çi li wan bê?**

Mijara otonomiya demokratîk bi şaşî tê gotûbêjkirin. Ew projeya ku em bi navê otonomiya demokratîk behs dikin, ne li ser bingeha cografî û netewî ye. Civak sînorekî ji deshilatên hikûmeta navendî re datîne û ew xwe bi xwe îdare dike. Ya girîng ew e ku deshilatên dewletê bên sînordarkirin. Projeya otonomiya demokratîk ku em behsa wê dikin ne tenê bi Kurdistanê ve sînordar e, lê navçeyên Egeyê, li ser deryaya Reş û Anatoliya Navîn jî bi xwe ve digire. Divê em wê yekê jî bibînin ku dewleta li ser bingehê yek netewe û afirandina yek milet hatî avakirin, êdî nayê qebûl kirin. Amerîka ev model meşandiye, lê ev li Rojhilata Navîn bi ti awayekî nayê qebûl kirin. Dema em behsa otonomiya demokratîk dikin, mebesta me ew e ku em nedaletî û neheqiya dîrokî bibîr bînin. Em di damezrandina dewletê de hene, lê piştî wê em namînin, ev jî neheqiye. Projeya min a otonomiya demokratîk rexneyeke li dîroka Komara Tirkiyê ye. Projeya otonomiya demokratîk bîrxistin û nûkirina salên navbera 1919-1922'an de ye. Tê zanîn ku di wan salan de, dema Mustefa Kemal kongreya Erzeromê sazkir, şanda Bidlîsê li şûna ku bi navê Bidlîsê beşdarî kongreyê bibe, ew bi navê Kurdan beşdarî kongreyê bû. Em dixwazin vegerin wê dîrokê û niha zîndî bikin.

Ew faşîzma ku ji aliyê "Tirkên spî" ve tê meşandin, hewla jinavbirina hemû cudahî û taybetmendiyan dide û wan veşartî dihêle. Bi dirêjiya dîroka Komara Tirkiyê hewl ji bo dirustkirina nasname û miletê Tirk hatiye dayîn. Ji bo vê jî hewla jinavbirin û Tirkkirina tevahî ziman, nasname, kultur û heta bîrûbaweriyên olî jî hatiye dayîn. Nêrîna dewleta netewî ku li Tirkiyê heye ji hemû aliyan ve hatiye xurtkirin. Qonaxek dest pêkiriye, di vê qonaxê de Kurd roleke pêşengî dibînin. Ji bo berxwedana li hember dewleta netewî, sîstema otonomiya demokratîk baştirîn û guncawtirîn çareserî ye. Ev jî tenê ji Kurdan re nabe, lê ji bo hemûyan e û ne tenê li Tirkiyê, lê li hemû Rojhilata Navîn ev dikare bê cîbicîkirin. Dibe ku hêsan nebe di cîh de dewleta netewî bidin aliyekî, em wê fêm dikin, lê divê ew jî bê zanîn ku êdî em digel dewleta netewî naguncin.

> "Di referendûmê de me derfeta dawîn daye Erdogan"

**Eger BDP biryara boykotkirina referendûmê nedaba, li gor we, gelo Kurdan wê dîsan bi "belê" dengê xwe bidana guhertinên destûrî?**

Rast e me ji bo çareseriyeke demokratîk û ferzkirina destûreke demokratîk bi ser komar û hikûmeta Tirkiyê de, biryara boykotê da. Eger me xwestiba, ev referendûm rastî şkestinê dihat û xesar dikir. Eger me bi "nexêr" dengê xwe dabaya, wê demê bê goman ev paketa guhertinên destûrî derbas nedibû û qet sernediket. Me derfeta dawî daye Erdogan, pêwîst e ew baş vê yekê bibîne. Ez hêvîdarim ji vir û şûn de ji bo meseleya destûreke demokratîk û çareseriyeke demokratîk, guhertinên pozitîv çêbibin.

## Sedemê çêbûna 'Apo'

**Gelo hûn xwe weke serokê gelê Kurd dibînin? We daxwaz kiriye ku hûn ji zîndanê bên azadkirin?**

**Abdullah Ocalan:** Min qet xwe bi van core navnîşanan nedaye nasandin. Ji bo kesên ku meraq dikin, bizanin çima Ocalan ew kar kiriye, mînaka peywendiya navbera min û dayika min dibe ku baştirîn bersîv û ronkirin be. Dema di temenê 7 saliyê de ez xistim ber xwendinê, min hest kir ku ez hatime neçar kirim ku zimanekî din ê cuda ji zimanê dayika xwe hîn bibim. Weke zarokekî tirsek li cem min çêbû, min hizra wê yekê dikir ez ê çawa hînî zimanekî biyanî bibim, ez bi wê yekê pir nerehet bûm û ew li cem min nehat pejirandin. Bi bîranîna wê serdemê ku serdema zaroktiya min bû, min ji dayika xwe çaverê dikir ku ew min ji asimîlasyona kulturî rizgar bike. Vêca ji ber ku dayika min amade nebû wî karî bike, min gelek gengeşe bi wê re kir. Ji roja ez ji malê derketim û heta roja ku dayika min mir, min yek car bi telefonê jî axaftin bi wê re nekir. Ev îsyana min ewqasî bihêz bû, heta dema dayika min li ber mirinê jî bû, min telefon jê re venekir. Ez hê jî ji ber azarên wê dinalînim. Dema min ew gengeşe bi dayika xwe re dikirin, min jê re digot 'heta mirîşik jî dema digel çûçikên xwe diaxivin, zimanekî wan ê taybetî heye û ew wî diparêzin, çima tu wê yekê nakî?'

Pirsgirêka min ev e, ev e sedema dirustbûna "Apo". Eşkerekirina wê rastiyê û ew tişta ku niha hemû li ser diaxivin û qebûlkirine ku tiştek heye jê re dibêjin pirsgirêka Kurd. Ji bo çareserkirina vê pirsgirêkê heta îro jî ti daxwaziyeke min a kesîtî nebûye. Ji min re qet ne girîng e ku ez li Îmraliyê bim yan li derve. Di vê rewşa ku ez niha tê de me, çi bêalî yan wek aliyekê wê, ez nikarim roleke baş bilîzim ji bo çareserkirina pirsgirêkê. Lê eger derfet hebe, ez amade me bi dilxweşî ji bo aşitî û çareseriya demokratîk rol bilîzim.

# Hîşam Mehmûd çawa hat girtin?

## Rêvebirê Polîsên Bêcî: Me li gor fermana Dadgeha Lêkolîn a Hewlêrê Hîşam Mehmûd girt

**Ebdulla Qirgeyî** Hewlêr

Rêvebirê Polîsên Qezaya Bêcî ya Parêzgeha Selahedîn, di hevpeyvîneke de ji bo Rûdawê eşkere kir ku di girtina Hîşam Mehmûd Îsmaîl de ti kesekî polîs û asayişa Herêma Kurdistanê beşdar nebûne. Wî herwiha ronkir ku li ser biryara Dadgeha Lêkolîn a Hewlêrê wan ew kesê daxwazkirî binçavkir û li roja 27'ê Hezîrana 2010'an ji aliyê Dadgeha Lêkolîna Bêcî ve teslîmî polîsên Hewlêrê kirin. Hîşam Mehmûd bi beşdarîkirina di kuştina rojnamekar Serdeşt Osman de tometbar e.



Hîşam Mehmûd Îsmaîl

### "Hîşam li Şirgatê Serdeşt wergirt"

Qutabiyê Beşa Îngilîzî li Kolêja Ziman a Zanîngeha Selaheddîn li Hewlêrê Serdeşt Osman, roja 4'ê Gulana 2010'an li ber deriyê Kolêja Hunerên Ciwan hate revandin û roja 5'ê Gulana 2010'an termê wî li Mûsilê hat dîtin. Li gor ragihandina duyemîn a Lîjneya Lêkolînê ku li roja 15'ê Îlonê hat belavkirin, "li gor gotina çend şahidên li cihê bûyerê ku bi çavê xwe dîtine çawa navborî bi otombêleke ji corê Honda (Minî Bus) rengê spî birin." Herwiha di daxuyaniyê de ji wan re diyarbûye ku "kesekî girêdayî grûpa 'Ensar El-Îslam' bi navê Hîşam Mehmûd Îsmaîl (28) ku bi regeza xwe Kurd e, rûniştvanê bajarê Mûsilê ye û li bajarokê Bêcî karê fîteriya otombêlan dike, destê wî di kuştina Serdeşt Osman de hebû. Bi çavdêriya lîjneyê, bi rêya dadgehê û bi hemahengî digel rêvebiriya Polîsên Qezaya Bêcî asayişê û asayişê karîn navborî binçav bikin û bişînin lîjneya lêkolînê."

Di beşeke din a daxuyaniyê de tê gotin ku tometbar Hîşam Mehmûd di lêkolînê de îtiraf kiriye ku, "roja 4'ê Gulana 2010'an hatiye agahdarkirin ku biçe bajarokê Şergatê girêdayî Parêzgeha Selaheddîn ji bo ku li wir peywendiyê bi endameke din ê wê grûpê bi navê 'R. M' bike, emaneta ku digel wane werbigire û bigihîne bajarê Mûsil, ji ber ku navborî şehrezayê wê sinorê ye. Tometbar jî diçe cihê diyarkirî û li wir otombêlekê ji sê tometbarên din ên vê grûpê digire ku tawanlêkirî (Serdeşt Osman) jî bi zindî, bi dest, pê û devê girêdayî tê de bû. Paşî tometbar bi xwe otombêlê dajo û digel tometbar 'R. M' diçe bajarê Mûsil, ew li taxa 'Întisar' otombêlê û kesê tawanlêkirî jî teslîmî berpirsê grûpê 'R. R' dike." Her li gor daxuyaniyê "Piştî çend rojan tometbarê girtî ji berpirsê grûpê dizane ku tawanlêkirî hatiye kuştin." Derbarê sedema kuştina Serdeşt Osman ji aliyê wê grûpê ve, lîjne li gor axaftinên Hîşam Mehmûd dibêje: "Serdeşt Osman Hesen soz dabû wê grûpê ku hin karan ji wan re bike, lê wî ew kar bicîh neanîbûn."

### Polîsên Îraqê Hîşam girtin

Rêvebirê Polîsên Bêcî, General Xelîl Elî Cibûrî, di hevpeyvîneke de bi rêya telefonê ji bo Rûdawê ragihand ku ji bo dûvçûna tometbar û tawanbaran di navbera wan û deshilatên emniyeta Herêma Kurdistanê de hevkariyeke baş heye, "Herwiha em zanyariyên di wî warî de jî bi hevdu re diguherînin."

Derbarê girtina Hîşam Mehmûd Îsmaîl ku bi beşdarîkirina di kuştina Serdeşt Osman de tometbar e, Rêvebirê Polîsên Bêcî ragihand "Tometbar li Bêcî fîteriya otombêlan dikir û dosyeya wî li Polîsên Bêcî hebû ku ew rûniştvanê bajarê Mûsil e, lê derbarê hebûna çalakiyên gumanlêkirî tiştek di dosiyeya wî de tune bû. Asayişa Herêma Kurdistanê wêne û nexşeyê dukana wî li Bêcî ji me re şandin, diyar bû ku wan dûvçûn kiriye, herwiha ji bo girtina wî nivîsa dadgehê jî ji me re şandibûn, fermana girtina wî ji Dadgeha Lêkolîna Hewlêrê derketibû. Me jî girt û dosyeya wî da Dadgeha Lêkolîna Bêcî, Dadwerê Lêkolînê jî biryar da ku bişînin Dadgeha Lêkolîna Hewlêrê û paşî bi şêweyekî yasayî teslîmî polîsên Hewlêrê kirin." Herwiha got "Ti kesekî asayiş û polîsên Hewlêrê ji bo girtina wî nehatine Bêcî."

### Efserê ku tometbar binçavkir, hat kuştin

General Xelîl Elî Cibûrî zanyariyên zêdetir dane Rûdawê û ragihand: "Roja 23'ê Hezîrana 2010'an heyetek bi fermandariya Cîgirê Kolonêl Hisên Elî Ehmed, erkê girtina kesê daxwazkirî encam da. Roja 27'ê Hezîranê jî bi şêweyekî yasayî teslîmî polîsên Hewlêrê kirin. Tişta balkêş ew e ku piştî du rojan, wate roja 29'ê Hezîrana 2010'an teroristan teqînek li ber deriyê rêvebiriya me çêkirin û di encamê de Cêgirê Kolonêl Elî Ehmed şehîd bû."

Rêvebirê Polîsên Qezaya Bêcî herwiha got "Di serî de daxwazkirî digot ez xelkê Mûsilê me, paşî digot ez xelkê Hewlêr im û li Mûsilê rûdinim. Herwiha digot Asayişa Hewlêrê ji min hez nake." Cibûrî herwiha got "Me ew şand dadgehê, dadwerî jî pirs ji wî kir gelo nivîsa dadgehê ya derbarê te digel nav û adresa te wekhev e? Wî jî got, 'belê.' Di encamê de ji bo cihê daxwazkirî ku ew jî Dadgeha Lêkolîna Hewlêrê ye, hat şandin."

---

**Teyar Adil Goran** Berdereş

## Hîşam Mehmûd kî ye?

### Xalê Hîşam Mehmûd:
### *Hîşam yekane bû û guhê xwe nedida min*

### Xizmekî nêzîk ê Hîşam:
### *Em bi eslê xwe Ereb in û bapîrê me hatiye Kurdistanê*

Piştî ku lîjneya lêkolîna kuştina qutabî û rojnamevan Serdeşt Osman, ragihand ku 'endamekî grûpa Ensar El-Îslam bi navê 'Hîşam Mehmûd Îsmaîl' ku Serdeşt revandin û kuştin, hatiye girtin û ew bi regeza xwe Kurd e, xizmekî Hîşam ê nêzîk ji Rûdawê re got ku ew bi esla xwe Ereb in û bapîrê wan berê hatiye Kurdistanê û xizmaniya Kurdan kirine, loma di nasnameyê de jî xwe weke Kurd qeydkirin e.

Xalê Hîşam, Sebah Remezan Yunis, ji Rûdawê re got ku ev pênc sal in haya wî ji Hîşam nîne "ev nêzîkî sê mehan e em dizanin ku Hîşam hatiye girtin, lê digotin ku ew ji ber ku pereyê kesekî biriye, hatiye girtin." Wî herwiha got ku haya wî ji karên xwarziyê wî nebû, ji ber ku wan li sala 2005'an ji tirsa teroristan mala xwe ji Mûsilê barkirine û hatine Kurdistanê û ti peywendiyeke wan digel Hîşam nemaye.

Xalê Hîşam li mala xwe ya li qezaya Berdereş ji bo Rûdawê got "Hîşam yekaneyê dayik û bavê xwe bû, bavê wî bi nexweşiya şekirê wefat kir, niha jî mala wan li taxê Keram e ya bajarê Mûsil e." Sebah Remezan herwiha got Hîşam bi kêfa xwe tevdigeriya, kesê nedikarî digel wî baxwe û ji bo encamdayîna karên xwe pirsa ti kesî nedikir, bi taybetî piştî koça bavê wî, ji xwe ti deshilateke dayika wî li ser nebû, me tenê dizanî ku ew karê fîteriya otombêlan dike." Li gor axaftinên wî dema wêneyê Hîşam di televizyonê de hat belavkirin, xizmekî wan ew ageh-darkirin. Helbet wan zanîbû ku ew hatiye girtin, lê ew li pey wî negeriyan e "ji ber ku gelek caran min şîret li wî dikirin, lê wî guhê xwe ne dida min."

Sebah dilteng bûye ku di daxuyaniya lîjneya lêkolînê de hatiye diyarkirin ku Hîşam tawan encamdaye "tevî ku agahiyên me li ser karên wî tune ne, lê em hêvîdarin ku yasa serwer be, bila yasa rêya xwe bigir e. Bi rastî ji dema min ew nûçe bihîst ez gelekî xembar bûm e, çavên min ranabin û em şerim dikin biçin nav xelkê. Tişta ku bi sedema Hîşam bi serê me hat bila neyê serê kesî. Gelek dostên min dilê me xweş dikin, lê ji min re her nexweş e."

Malbata Hîşam di esilê xwe de xelkên navçeya Berdereş in û bapîrê wî di berê de li gundê Kanîlan bicih bûye, niha jî çend xizmên wan li wî gundî dimîn in. Muxtarê gund, Mihemmed Îsmaîl dibêje "em dizanin ku Îsmaîlê bapîrê Hîşam li gundê me jiyaye, lê Hîşam û bavê xwe qet li vî gundî neman e. Ez muxtarê gund im û min Hîşam nasnekiriye, lê min bapîrê wî naskiriye."

Xizmekî din ê Hîşam ku nexwest navê wî belav bibe ji bo Rûdawê got ku Hîşam ji zaroktiyê digel bavê xwe karê fîteriya otombêlan dikir, "lê ev 5 sal in min ew ne dîtiye, dema min wêneyê wî di televizyonê de dît min ew nas nekir, ji ber ku gelekî qelew bûye û pora wî jî weriyaye." Wî xizmê Hîşam got ku ew xelkên gundê Kanîlan in "lê bi eslê xwe em Ereb in û ji eşîreta Bedran in, em di berê de hatine Berdereş, bavê me xizmaniya Kurdan kiriye û keçên xwe dane Kurdan û li Kurdistanê man e. Niha me zimanê erebî ji bîra kiriye û regeznameya xwe jî kiriye Kurd. Bavê Hîşam ji me ye, wate Ereb e, lê dayika wî bi esla xwe ji gundê Tilcomir ê navçeya Berdereş e û dibe keşa xaleta bavê Haşîm."

Muxtarê gundê Kanîlan, Mihemed Îsmaîl, amaje bi wê yekê dide ku nasnameya Hîşam jî ne li ser gundê Kanîlan e, lê li ser qezaya Şêxan e, "lê bapîrê Hîşam ku navê wî Îsmaîl Ferhan e digel mamê wî li gundê me jiyan e." Herwiha li gor zanyariyan mamekî Hîşam jî rûniştvanê qezaya Xebat a Parêzgeha Hewlêrê ye."

Li gor hin zanyariyan dibe ku Hîşam Mehmûd beşdarî kuştina Kurdekî navçeya Berdereş kiribe ku meha Nîsan a sala borî li taxa pîşesaziya Mûsilê ji aliyê grûpeke radekal a Îslamî ya çekdar ve hatiye kuştin. Ew xizmê nêzîkê Hîşam got eger Hîşam ew tawan e kiribe, ew ne bi wî re ne "eger wî bi rastî ew tawan kiribe, hikûmet çi lê bike bila bike, wê demê mafê wî yê bi darvekirinê jî heye." Wî xizmê Hîşam herwiha got dilê wî bi dayika Hîşam dişewit e, ji ber ku ew yekaneyê wê ye û ku wî tawan kiribe jî, ti tawaneke wê nîn e.

# Êdî cîhan Kurdên bênasname nas dike

Li Sûriyê Kurd bi kerta zer û sor hatine cudakirin: xwediyên kertên sor ji hemû mafekî bê par in, xwediyên kertên zer jî tenê mafê wan heye bê ti taybetmendî li Sûriyê bijîn.

Sala 1962'an dewletê nasname ji Serokerkanê Artêşa Sûriyê, Tofîq Nizamedîn, stand ji ber ku ew Kurd bû.




Kurdên ji Rojavayê Kurdistanê yên li welatên Ewrûpa dijîn bi sazkirina meşan daxwaza mafên xwe dikin

**Rûdaw–** Lêgerê taybetî yê rêxistina Neteweyên Yekgirtî (NY), Olivie du Shauté, serdana rojhilatê Sûriyê kir ji bo çavdêrîkirina hişkesaliya ku ev pênc sal in li navçeyê heye, lê pirseke din jî dibe cihê giringîdayîna wî. Piştî serdanê wî raporek li ser Kurdên Sûriyê nivîsand û rewşa mafên mirovan wek "ne asayî" binav kir.

Du Shauté xelkê Beljîka ye, wî beşekî giring e rapora xwe ji bo pirsgirêkn wan terxan kiriye û dibêje, 300 hezar Kurd li Sûriyê ji nasnamê hatine bêbeşkirin, loma ji mafên hevwelatîbûnê hatine bê parkirin wek mafê mulkdariyê, xwendina bê pere, sûdwergirtina ji xizmetguzariyên tendirustî yên giştî û derxistina pasportan ku serdana derveyî welat pê bikin. Ligel bêparbûn ji bikaranîna kertên mîrî û giştî.

Olivie du Shauté divîse: "Ev rewş divê neyê pejirandin û awirek li van Kurdên bênasname bê dayîn." Kurd beşek in ji pêkhênerên rûniştvanên Sûriyê, lê ti serjimêriyeke fermî ya hûrbîn li ber destan tune ji bo zanîna hejmara wan. Çavkaniyên kurdî dibêjin hejmara Kurdan 6 milyon e, lê ji tevhiya rûniştvanên Sûriyê ku nêzîka 23 milyon kesane serjimêriyeke rast tune, çavkaniyên serbixwe diyar dikin ku hejmara Kurdên li Sûriyê nêzîkî 2 milyonan e û hin jî dibêjin 3 milyon in. Piraniya Kurdên Sûriyê Musilman in û mezhebê Sunnî dişopînin li ser rêbaza Îmamê Şafiîî, kêmhejmarek jî Êzdî û Elewî ne.

Di derbarê hişkesaliya ku ev 5 sal in navçe heye, Olivie du Shauté gotiye, ajeldarên wê navçeyê ji sedî 80-85'î ajelên wan ji nav çûne, zêdeyî 800 hezar rûniştvanên wê navçeyê di hejariyeke berçav de ne, tevî ku ew devera berhemanîna petrolê ye û rojane 375 hezar bermîlên petrolê li têr deranîn û ji bo derve tên şandin.

Kurdên Sûriyê heta salên 60'an ji sedsala borî beşdarî hikûmetê bûne, du serdarên Kurd bi navên Fewzî Silo û Hesen Zeîm bûne serkomarê Sûriyê. Hinek kesatiyên warê siyaset û çanda kurdî wek Mîr Celadet Alî Bedirxan û helbestvanê navdar ê Kurd, Cegerxwîn ji Tirkiyê hatibûn Sûriyê, Osman Sebrî ji Kurdistana Tirkiyê bû, sala 1957'an Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê damezrand.

## Sor û zer

Beriya pêncî salan, dema ku dewleta Îraqê şer digel tevgera Mela Mistefa Barzanî kir, Kurdên Sûriyê hevsozên wî bûn û çalakvanên siyasî yên Kurd ji bo parastina bizavê tevlî rêzên şoreşê bûn.

Di heman demê de ligel bizava Mela Mistefa, rewşa siyasî ya Sûriyê ne aram bû, dewletê ji tirsa çûnûhatina Barzanî di nav xaka wê de, dest bi kontrolkirina navçeyên xwe kir, di sala 1962'an de dewletê li navçeya Cezîre dest bi serjimêriyeke giştî kir da nasnameyên nû ji bo rûniştvanên navçeyê derxe. Ligel bidawîhatina serjimêriyê, beşek ji Kurdên navçeya Cezîre ku hejmara wan ji 70-150 hezar kesan dibû, hatin paşguhxistin û wek xelkê Sûriyê nehatin naskirin, dewletê wê demê got, van kesan nekarî belgeya îspatkirina ku ew xelkê Sûriyê ne, nîşan bidin.

Ji ber ku dewletê li ser çi bingehekê Kurdên Cezîrê piştguhxistin û ew wek xelkê Sûriyê nehesibandin, nerazîbûn û nîgeranî li pey xwe anî, li hinek malbatban beşek ji endamên malbatê wek Sûrî û beşekî din wek ne Sûrî hatibûn tomarkirin, mînaka herî balkêş Tofîq Nizamedîn bû ku serokê erkanê artêşa Sûriyê bû, lê ji ber wek ne Sûrî hat hesibandin, nasnameya wî jê hat standin.

Êdî piştî vê serjimêriyê, dewletê Kurdên Cezîrê bi du kertên zer û sor cuda kirin. Xwediyên kertên sor ew bûn ên ku ji aliyê dewletê wek ne Sûrî hatibûn hejmartin û di tomarên dewletê de hatin bicîkirin. Van kesan tenê dikarî li Sûriyê bimînin bê ku ti mafekî hevwelatîbûnê werbigrin. Beşekî din tenê kertên zer wergirtin bê ku navê wan jî di tomarên fermî yên dewletê de bên tomarkirin û wek mektûm-veşartî hatin naskirin. Tenê mafê wan hebû ku li Sûriyê bijîn, bê ku mafê hevwelatîbûnê yan bi kêmanî wek kesên biyanî yên li Sûriyê dijîn, bidest bixin.

Ev kes û neviyên wan li gor rapora du Shauté, niha hejmara wan zêdeyî 300 hezar kesane û hêjî bê nasname ne, tevî ku ev tişt dijî pîvanên navnetewî ye ku dewleta Sûriyê endameke di rêxistina NY de.

Daxuyaniya mafê zarokan ku di sala 1959'an de ji aliyê NY derketiye, sala 1993'an Sûriyê jî îmzeya xwe avêtiye ser vê lihevhatinnameya ku dewletên endamên xwe pêgîr kirine ku divê piştî jidayikbûna wan, navê zarokan bê tomarkirin û regeznamê werbigrin.

Di benda 3 a yasa hevwelatîbûnê ya Sûriyê, zarokên ku ji dê û bavekî bi regeznameyeke ne diyar an bê nasname jidayik dibin, wek hevwelatiyên Sûriyê tên hejmartin, lê Sûriyê ev yasa heta niha ji bo Kurdên bê nasname bikar neaniye.

# Îran rewşa parêzeran aloz dike

Azad Kurdî

Komara Îslamî ya Îranê hin parêzeran bangî dadgehê dike, li hinekan jî daxuyanîdayîna ji medyayê re û derketina ji welat qedexe kirine û beşek ji parêzeran jî direvin derve.

Her ku diçe xeleka karê parêzerên serbixwe û naskirî li Îranê ji ber guşaran bertengtir dibe. Parêzerekî Kurd dibêje: "Karê parêzeran li Îranê bûye karekî dijwar." Parêzerekî Faris jî dibêje: "Xeleka karê parêzeran hatiye tengkirin ji bo ku nikaribin berevaniya girtiyên siyasî bikin."

Ji sala borî ve dema Mehmud Ehmedî Nijad bi rêya hilbijartinên kêşedar careke din ji bo serkomariya Îranê hat hilbijartin, karê parêzeriyê li Îranê dijwartir bû, bi taybetî jî bo parêzerên serbixwe û naskirî. Hejmareke parêzeran hatin girtin û dosiye dijî beşekî wan hat vekirin û derketina derveyî Îranê li wan hat birrîn, hinek parêzer jî neçar bûn ji Îranê bar bikin.

Meha borî parêzerê naskirî yê Îranê, Mihemed Mistefayî, piştî ji aliyê navendên ewlekariyê hat vexwendin ji Îranê bar kir û xwe gihand Norwêjê. Mistefayî parêzerê gelek dozên hestiyar bû li Îranê û ya herî giring dosiya Sekîne Aştyanî ye ku sezaya kevirbarbankirinê li ser hatiye tespîtkirin û dosiya wê li ser astê navnetewî hatiye naskirin.

Herdu parêzerên Îranê Ebdulfetah Sultanî û Mihemed Elî Dadxwah, ji ber pêdagiriya wan li ser şopandina dosiya girtiyên siyasî hatin binçavkirin û çend mehan li girtîgeha Êvîn man. Herwiha doz dijî parêzerê naskirî yê Kurd, Salih Nîkbext, ku li Tehranê dimîne hatiye vekirin û çûna derveyî Îranê lê hatiye qedexekirin. Mihemed Olyayî niha li girtîgehê ye. Xelîl Behramiyan ji bo dadgehê hatiye vexwendin û lêpirsîn ligel hatiye kirin. Mihemed Seyfzade jî dawiya vê mehê tê dadgehkirin. Herwiha di van rojên borî de, hêzên polîsên Îranê mal û buroyên mafnas û parêzer, Nesrîn Stude, kontirolkirine û hejmareke belgename û doz jî ligel xwe birine û bi tometa "Civîn û hewldana têkdana rewşa ewlekarî ya welat û propaganda dijî rêjîmê" ji bo dadgehê hatiye vexwendin.

Nesrîn Stude ku çûna derve lê hatiye qedexekirin, van tometan red dike û wan wek "tometên bê bingeh û cihê pêkenînê" binav dike û dibêje: "Dixwazin karê parêzeran dijwar bikin ku karê wan parastina tometbarane, nemaze girtiyên siyasî ne mumkin bikin." Stude bi piştrastî ragihand: "Tiştên ku min pê tometbar dikin, ji ber wêya ye ku min parêzeriya hinek girtiyên siyasî kiriye."

Salih Nîkbext derbarê guşarên ser parêzeran ji bo Rûdawê got ku piştî ragihandina encama 10'emîn gera hilbijartinên serkomariyê hejmareke zêde ya çalakvanên siyasî hatin girtin: "Loma parêzeran helwesta xwe nîşan dan ku karê van çalakvanên siyasî ne dijî hikûmet û yasa Îranê ye, beşeke van parêzeran xwe paşve kişandin, lê hinek ji wan li ser helwesta xwe pêdagir bûn, loma hinek ji wan hatin desteserkirin û hê li girtîgehê ne û çûna derveyî Îranê li beşekî din jî hat qedexekirin." Nîkbext eşkere kir ku gef li çalakvanên siyasî ji aliyê karbidestên saziya dadwerî hatibû xwarin, ger bibin parêzerên wan, sezayên tund didin wan.

Nîkbext piştrast kir ku li Dadsera dosiyek dijî wî jî hatiye vekirin û çûna derve lê hatiye qedexekirin, lê heta niha bi awayekî fermî nehatiye vexwendin. Bi baweriya navborî, li Îranê hestiyariyeke zêde derbarê wan parêzeran heye ku ligel medyayên bi zimanê Farisî li derve, BBC, Dengê Amerîka VOA, Radyoya Almanya DW-World daxifin û daxuyaniyan didin, ew vê ne yasayî dibîne: "Ji ber di yasa Îranê de tiştek tune ku hevpeyvîn û daxuyanî ji aliyê kesatiyên mafnas ligel medyayên biyanî qedexe bike. Gotin e gelek parêzeran ku daxuyaniyan nedin van kanalan, lê ev ligel yasa Îranê nagunce."

Salih Nîkbext dibêje gunehên ku di hundirê sala borî de parêzer pê hatine tometbar kirin ne dirust in: "Ev tawan ji bo ti mafnasekî ku di çarçova yasayên Îranê de berevaniya takekesan dike ne dirust û rewa ne." Navborî wiha axaftina xwe qedand: "Karê parêzeriyê li Îranê pir dijwar bûye, nemaze piştî 10'emîn gera hilbijartinên serkomariyê û binçavkirina hejmareke zêde ya çalakvanên siyasî û kesên ji encama hilbijartinan nerazî."

# CHAK qirkirina Kurdan radigihîne cîhanê

"Desthilatdarên welatê me, cîhanê li gor xwe agahdar dikin û qirkirinên li welatê me dibin, bi derewên xwe vedişêrin. Em dixwazin qirkirin û jenosîd neyên wendakirin û hesabên wan were pirsîn."



Koordînatorê Komîteya Bakur a Chakê Seyitxan Anter

**Fatma Savci** Stockholm

Rêxistina Kurdocide Watch ku bi piranî wek Chak tê zanîn, di van her du salên dawî de kete rojeva Kurdan û li nav Ewrûpiyan jî hat naskirin. Bi taybet di kampanya xwe ya ji bo hemû girtiyên siyasî yên Tirk û Serokê şaredarê Surê yê Amedê Abdullah Demirbaş û kampanya ya ji bo zarokên girtî li Swêdê deng veda. Chak dema di 2002'an de, bi taybet ji bo Enfal û qirkirina Helebçe bi cîhanê bide zanîn, vegotin û berpirsiyarên wê teşîr bike li Holanda hat avakirin. Chak wek "Navenda Helebçe ya Li Dijî Enfal û Jenosîda Gelê Kurd" tê naskirin û Piştî kongreya xwe ya 2009'an li Danîmarka qada xwe ya xebatê berfireh kir û biryara xebatê ji bo her çar perçeyên welat da.




### CHAK komîteya Rojava saz dike

Chakê heta niha ji bo ku qirkirin, jenosîd û binpêkirina mafên mirovan ên li her perçeyên Kurdistanê bişopîne sê komîteyên cuda yên xebatê ava kirine. Komîteya Başur, Komîteya Rojhilat û Komîteya Bakur. Chak a ku li Swêdê cihekî berbiçav çêkir û mohra xwe li xebat û hewldaneke dîtbar da, niha amadekariya çalakiyên nû dike. Ji bo ku li ser xebatên Chakê bibin xwedî agahî em bi Kordînatorê Komîteya Bakur, Seyidxan Anter re runiştin. Anter diyar dike ku ew niha amadekariya avakirina Komîteya Rojava jî dikin û piştî hilbijartinên li Swêdê wê bi vê armancê û li ser pirsgirêkên Rojava konferansekê li darbixin.

Li ser armanca ava kirina Chak û çalakiyên wê Anter wiha dibêje: "Mixabin li her çar beşên Kurdistanê saziyên me yên mafên mirovan nikarin xwe bi derveyê welat bidin nasîn. Derfetên wan kêm in. Em dixwazin bibin dest û piyên wan, dengê xwe bi ser yên wan ve bikin ku dengê me berztir bibe. Desthilatdarên welatê me, cîhanê li gor xwe agahdar dikin û qirkirinên li welatê me dibin, bi derewên xwe vedişêrin. Em dixwazin qirkirin û jenosîdên ku li hember Kurdan bûne, neyên wendakirin û hesabên wan were pirsîn. Bo vê jî saziyên mafê mirovan û siyasetmedaran têxin tevgerê." Anter wek mînak, Konferansa Dêrsimê ku îsal li Stockholmê hat lidarxistin û dengekî baş da, nîşan da.

### Ji bo Demirbaş kampanya vekirin

Chak a ku heta niha li panzdeh welatên wek Brîtanya, Danîmarka, Holanda, Swêd û Başurê Kurdistanê şaxên wê yên fermî hatine avakirin, bûye navgîneke baş ya agahdarkirina rewşa Kurd û Kurdistanê. Anter diyar dike ku piraniya endamên wan Kurd in û kesên ku xwedî têkiliyên siyasî ne: "Lê piştî kampanya yên Chakê ku li Swêdê bûn, gelek mamoste yên Kurd û siyasetmedarên ku di nava partiyên cuda de cîh digirin jî bûn endam. Endamên me yên ciwan jî zêde dibin. Lê ne şert e ku herkes bibe endam. Xebata Chak xebateke muşterek e. Her Kurdek û mirovperwerek di qada zanyariya xwe de dikare bibe alîkar. Mînak dema me ji bo serokşaredar Abdullah Demirbaş ê nexweş kampanya destpêkir, me raporên wî yên tenduristiyê anîn û heval û dostên me yên doktor li ser wan lêkolîn kirin û raporên agahiyê amade kirin. Dema me ji bo zarokên li zîndana kampanya destpêkir, dostên me yên doktorên zarokan li ser vê mijarê rawestiyan û raporên gelek profesyonel amade kirin û me ew pêşkêşî raya giştî kirin." Di heman demê de, kampanya ji bo şexsiyetên wek Leyla Zana, Ordîxanê Celîl, İsmail Beşîkçî, Helena Svensson (Jinek Yahudî ya mafparêz ) Steffan Hjirten (Rojnamevanekî Swêdî yê naskirî û yek ji xwediyê wêneyên pêşîn yê Helebçe ye) û gelek kesên din vekirine.

Kordînatorê Komîteya Bakur Seyidxan Anter da xuyakirin ku ew amadekariya konferansekê ji bo rewşa Rojhilatê Kurdistan dikin.

# Polîsên Brîtanî û Îraqî li penaberên dersînorkirî didin

Federasyona Sertaserî ya Penaberên Îraqû û BBC lêdana penaberan îspat dikin, lê rayedarên Brîtanyayê ev red dikin.



**Hawar Ebdulrezaq** Hewlêr

Federasyona Sertaserî ya Penaberên Iraqê li dijî hikûmeta Brîtanya û Iraqê li cem Komîsyona Bilind a UN bo karûbarên penaberan doz vekir. Sedemê doze ew e ku karbidestên wî welatî penaberên Kurd û Iraqî bi kotekî dersînor kirine û di dema dersînorkirinê de li wan dane. Federasyonê ragehand ku yek ji kesên dersînorkirî destên wî hatine girêdan û dû re lêdane û yekî din jî ji ber îşkencê destê wî ji cih derketiye.

Lê li gor raporeke malpera BBC, Ajansa Çavdêrîkirina Sînorên Brîtanya UKBA, ev tomet red kirin û ragehand ku "tu hêz" li himberê van dersînorkiriyan nehatiye bikaranîn. Herwiha UKBA penaberên dersînorkirî tometbar kiriye ku êrîş kirine ser karmendên wan û dû re jî xwestine zererê bidin firokeya ku pê hatine dersînorkirin.

UKBA daxwiyand ku hefteya borî 49 penaberên Iraqî ku hinek ji wan Kurd in ji bajarê Londonê şandine Bexda, lê Federasyona Sertaserî ya Penaberên Iraqê ragehand ku jimara kesên dersînorkirî 62 kes bû.

Endama rawêjkara a Federasyona Sertaserî ya Penaberên Iraqê Semîre Ehmed diyar kir: "Piştî ku 62 penaberên Kurd ên Iraqî roja 6'ê Îlonê ji aliyê komandoyên Brîtanya dersînorî Bexda hatine kirin. Sekreterê federasiyonê Deştî Cemal gilînameyek li dijî hikûmeta Brîtanî û Iraqî li komîsyona bilind a karûbarên penaberan a ser bi UN li Cenevreyê tomar kiriye û jimareke penaberên ku lêdan xwarine pêşkêş kirine."

Semîr eşkere kir ku tevahiya aliyên peywendîdar li Ewrûpa ji van binpêkirinan hatine agahdarkirin: "Herwiha me peywendî ligel jimareke rêxistinên mafê mirovan û penaberan çêkir. Me wêneyên van penaberan jî dan Rêxistina Lêborînê ya Navdewletî û HWR."

Li gor rapora BBC, yek ji van penaberan Salih Seîd ku dibêje rastî êrîşekê hatiye û wiha dibêje: "Em di firokê de man, lê polîsan destê me kelepçe kir û em derxistin derve û li me xistin. Li me xistin û dijûn dan me, 4 polîsan min kişandin derveyî firokê, dû re kulmek li çavê min dan. Min penaberên din jî dîtin ku xwîn ji dev û çavê wan dihat. Dû re em radestî polîsên Iraqê kirin û wan jî bi daran li me dan."

Dersînorkiriyekî din bi navê Luqman Hemedemîn dibêje ji ber wê lêdanê destê wî ji cih derketiye: "Min dikir hawar da ku destê min berdin, ji ber dikir bişike û niha nikarim destê xwe bilivînim û min girêdaye."

Lê Mateo Cots ku karbidestekî UKBA ye van tometan red dike û dibêje: "Berevajî wêya ligel gihiştina wan bo Bexda êrîş birine ser 35 karmendên me û dû re jî xwestine zererê bigihînin firokê."

Sekreterê Federasyona Sertaserî ya Penaberên Iraqê Deştî Cemal ragehand ku divê UNHCR jiber van polîsan îşkence kirine, wan bide dadgehê.

## Hevserokê BDP'ê bo Barzanî û Talabanî:

# Bibin navberkar!

**Hevserokê BDP'ê Selahattin Demirtaş diyar kir ku PKK ji bo çekberdanê amade ye û ji hikûmeta AKP'ê xwest ku operasyonên leşkerî bide rawestandin û dest bi gavavêtinên demokratîk bike. Demîrtaş ji bo çareserkirina pirsgirêkê ji Barzanî û Talabanî jî xwest ku di navbera PKK û dewletê de bibin navberkar. Hevserokê BDP'ê Selahattin Demirtaş ji rojnameya me Rûdawê re axivî û pirsên me bersivandin.**



Wêne: Rûdaw

**Rûdaw: Hûn teqîna li Colemêrgê ku di encamê de 10 kesan jiyana xwe ji dest da, çawa şîrove dikin, hikûmet PKK'ê tawanbar kir, li gorî we kî ev êrîş kir?**
**Selahattin Demirtaş:** Di demeke ku dirêjkirina agirbesta PKK'ê dihate axaftin û BDP ji bo dirêjkirina agirbestê di nava gelek hewldanan de bû, ev êrîş pêk hat. Ev bûyer provokasyon e. Ev çalakiyeke JÎTEM'î ye û ji bo astengkirina hewldanên aştiyê, biratiyê hatiye kirin. Serokwezîr di şûna ku berpirsyarên provokasyonê bibîne de, parêzeriya JÎTEM'ê dike. Hikûmet weke her carê, vê carê jî teslîmê provokasyonê bûye. Eger dewlet bixwaze, dikare di nava rojekê de berpirsyarên vê bûyerê bibîne, aşkera bike. Digel her tiştî, ez careke din bang li Birêz Serokwezîr dikim, werin em vî şerî bidin sekinandin, bila êdî mirov nemirin, dayik negirîn.

**Di referendûmê de ji sedî 58 "erê" derket. Li 6 bajarên herêmê jî di bin rêjeya ji sedî 50 de mirov çûn ser sandoqan. Li hin bajaran jî ev rêje derdora sedî 50 bû. Hûn encamê çawa dinirxînin?**
Biryara me ya boykotê ji aliyê gelê me ve hate qebûlkirin û gel di warê çareserkirina pirsgirêka Kurd de helwesteke girîng a çareseriyê nîşan da. Bi ya min di vê referendûmê de, ji partiyan zêdetir, kesên ku makeqanûneke nû dixwestin, bi ser ketin. Beşekî kesên ku gotin "erê" û hemû kesên boykotvan, heta di eniya "na" de jî, beşek mirov diyar kirin ku ew makeqanûneke nû dixwazin. Ji ber vê yekê êdî li pêşiya hikûmetê peywireke sereke heye; pêwîst e bi şirîkatiya partiyên din, saziyên sivîl, bêyî ku li benda hilbijartinê bisekine, xebata makeqanûnê bîne rojevê.

**Li gorî çapameniyê piştî referendûmê hûn ê xweseriya demokratîk îlan bikira. Di rojeva we de îlankirina xweseriyê heye?**
Nexêr, rojeveke me ya wisa tune ye. Em ji îlankirinê zêdetir weke pêvajoya avakirinê li xweseriya demokratîk dinêrin. Mînak avakirina saziyên alternatîf, saziyên sivîl, komele, saziyên perwerdehiyê, saziyên sivîl, saziyên werzîşê, saziyên jinan, koperatîfên aboriyê, xwe bi xwe rêvebirin e. Ev pêvajoya avakirinê ye. Ji ber vê yekê di rojeva BDP'ê de îlankirin tune ye, ev pêvajo zûde ye dest pê kiriye û wê dewam bike.

**Li gorî Tirkan xweseriya demokratîk wê welat parçe bike. Gelo rast e?**
Ev metirsiya bêsebep bi zanebûn hatiye avakirin. Hikûmet û hin derdorên medyayê, ji bo ku Kurd ti mafên xwe bi dest nexin, her daxwazê weke parçebûnê bi nav dikin û dixwazin daxwazên Kurdan bitepisînin. Modela xweseriyê ku bi salan e li Ewrûpayê heye, li wan welatan nebû sedema parçebûnê. Nabe sedema parçebûna Tirkiyê jî. Ji Colemêrgê bigirin heta Stenbolê, Edîrneyê Kurd hene. Ji ber vê yekê daxwaza welateke din li gorî Kurdan ne bi aqilane ye. Kurd dixwazin li her derê Tirkiyê xweseriyên demokratîk ava bibin û dixwazin li her derê Tirkiyê bijîn. Dixwazin li her derê bi zimanê xwe perwerdehî bibînin û hebûna xwe biparêzin. Ev jî encax bi rêveberiyên xweseriya demokratîk mimkûn e.

**PKK'ê heta 20'ê Îlonê biryara bêçalakiyê dabû. Hûn helwesta hikûmetê ya li hemberî vê pêvajoyê çawa dinirxînin?**
Mixabin hikûmetê di vê pêvajoyê de ti gav navêtin û tenê temaşe kir. Ne tenê ji operasyonên leşkerî re, ji mirina 20 gerîlayan re jî çavên xwe girt. Ji ber vê yekê hikûmet ne di warê leşkerî de, ne jî di warê siyasî de, ne di warê civakî û aborî de, yek gaveke erênî navêt. Digel vê yekê PKK agirbestê dirêj bike neke, ew dizane. Em nikarin biryara vê yekê bidin. Lê daxwaza me ew e ku hikûmet zû operasyonan bide sekinandin û hewl bidin ku PKK jî agirbestê dirêj bike û ji bo çareseriyê rê bêne dîtin. Divê hikûmet van rojan baş binirxîne.

**Divê hikûmet çi bike?**
Mînak Serokwezîr demekî digot "ger çalakî çênebin, operasyon jî pêk nayên". Dikare vê gotinê careke din bêje û fermana sekinandina operasyonan bide artêşê. PKK jî dikare li ser vê gavê, bêçalakiyê qet nebe fiîlî dirêj bike. Di vê pêvajoyê de ku hikûmet jî xebata makeqanûneke nû bide destpêkirin, bendava hilbijartinê daxe û di "Qanûna Têkoşîna Bi Terorê" re de guherînan çêbike û gavên demokratîk bavêje, ev yek wê bi xwe re çareseriyê bîne. Bi ya min wê agirbest bêyî ku dem bê nîşandan bikeve dewrê û ev pêvajo wê pêşiya pêvajoya çekdanînê veke.

> **"Kes nikare bêje hikûmet nikare artêşê kontrol bike"**

**Tê gotin ku operasyonên leşkerî li dereveyî vîna hikûmetê pêk tê. Hûn jî wisa bawer in?**
Nexêr, kes nikare bêje hikûmet nikare artêşê kontrol bike. Di dema vê hikûmetê de bi dehan general hatin destbendkirin û avêtin girtîgehê. Ji ber vê yekê em şîroveyên wisa qebûl nakin.

**Wê çaxê Erdogan çima operasyonan nade sekinandin?**
Bi ya min hikûmetê bi vê helwestê nîşan da ku hêj bi awayeke leşkerî nêzî PKK'ê dibin, dev ji vê ferasetê bernadin û wê operasyonên leşkerî jî bidomînin. Ger bixwesta, dikaribû bi hêsanî bide sekinandin. Bi ya min hikûmetê bi zanebûn van operasyonan nesekinand. Hikûmet dixwaze bi zora leşkerî PKK'ê teslîm bigre. Ev daxwaz ti caran pêk nehatin, di 30 salan de ev polîtîka bi ser neket. Hikûmet dixwaze bi operasyonên leşkerî û avêtina hin gavên siyasî PKK'ê tasfiye bike. Di rojeva AKP'ê de ji çareseriyê zêdetir, tasfiye li pêş e.

**Wisa dixuye ger hikûmet heta kêliya dawî daxuyaniyek nede û gav navêje, wê agirbest xira bibe. Ger agirbest xira bibe, wê li Tirkiyê pêvajoyeke çawa dest pê bike?**
Bêguman wê pêvajoyeke nebaş be. Em hemû tabloya ku dema agirbest tune bû, baş dizanin. Ew tabloya rondikên çavan, êş û xwînê ye. Li aliyekî operasyonên leşkerî, li aliyê din çalakiyên PKK'ê. Ji her derê Tirkiyê re cenaze diçin. Di atmosfereke wisa de, siyaset jî zor dibe. Ji bo her kesî demeke zehmet e. Ji ber vê yekê, ji bo ew dem dest pê neke, divê hikûmet wêrek be. Ez bawer im PKK di vî warî de jidil e. Yanî heta ku operasyon neyên kirin, wê çalakiyan pêk neyîne, çiqas gavên çareseriyê bêne avêtin, wê çekan jî deynin. Ez wisa bawer dikim, ger hikûmet jî di aştiyê de jidil be, divê bi qasî PKK'ê wêrek be û qet nebe di vê merheleyê de operasyonan rawestîne.

**Ji partiya we şandeyek çû Herêma Federal a Kurdistanê û bi birêz Mesûd Barzanî û Celal Talabanî re hevdîtin pêk anî. Di vê hevdîtinê di li ser Konferansa Neteweyî ya Kurd hate sekinandin. Ev mijar di çi rewşê de ye?**
Hevalên me diyar kirin ku ew hevdîtin pir baş derbas bûne. Birêz Talabanî jî, birêz Barzanî jî eşkera kirine ku ew bi dilgermî nêzî konferansa neteweyî dibin û ji bo konferansa neteweyî divê gav bêne avêtin. Helbet armanca vê konferansê yekîtiya sînorên Kurdan nîne. Wê di warê çareserkirina pirsgirêkan de Kurd hêz bidin hev. Ji bo ku her Kurdên parçeyekî din bi dewleta tê de dijîn re pirsgirêkên xwe çareser bike, wê Kurd piştgirî bidin hev. Ji ber vê yekê ev konferans hemû Kurdan eleqedar dike.

## 'Konferansa Netewî" di destpêka sala pêş de pêk tê

**Dema konferansê diyar bû?**
Nexêr, dem zelal nebûye. Di hevdîtinên di navbera şandeyan de peyva "di demeke herî zû de" hatiye bikaranîn. Em di wê baweriyê de ne ku amadekarî wê heta dawiya salê biqedin û di destpêka sala pêşiya me de jî wê konferans pêk bê.

**Di warê çareserkirina pirsgirêka Kurd de, hêviya we ya ji rêberên li Başûrê Kurdistanê çi ne, ew dikarin roleke çawa bi cih bînin?**
Dikarin bi awayeke rasterast mudaxilê vê pirsgirêkê bibin. Bi ya min herdu rêber jî dikarin hem li PKK'ê û hem jî li hikûmetê bangewazî bikin. Dikarin di hevdîtinên nerasterast de navberkarî jî bikin. Dikarin wêrek bin û di vî warî de bang li cîhanê jî bikin. Dikarin nîşan bidin ku ew bi vê pirsgirêkê re jî nêz ve eleqedar dibin. Di demên dawî de ji xwe eşkera dibe ku wê zêdetir mudaxilê pirsgirêkê bibin û dest bi hewlên wêrektir bikin.

*Hevpeyvîn: Firat Baran*

## Çar daxwazên Kurdan yên sereke:

**Ji gotinên Erdogan eşkera dibe ku makeqanûna nû wê piştî hilbijartinan çêbe...**
**Selahattin Demirtaş:** Ev xeletiyeke pir mezin e. Ji ber ku çêkirina makeqanûneke nû wê weke soza hilbijartinê bîne pêşiya gel û ev yek wê dîsa bibe sedemê cudabûna civakê. Em dibêjin ku makeqanûna nû dikare piştî hilbijartinan çêbe, lê xebata wê divê ji niha de bê kirin. Divê zû platformeke sivîl a makeqanûnê bê avakirin û di vê platformê de partiyên siyasî, nûnerên saziyên sivîl tê de cih bigrin û pêşnûmeyek amade bikin.

**Di makeqanûna nû de, çi cih negire, hûn ê li dij derkevin. Dive kîjan maf di vê makeqanûnê de hebin?**
Em ji bo Kurdan çar daxwazên sereke dikin: Ya yekemîn perwerdehiya bi zimanê zikmakî ye, divê pêşiya vê yekê vebe. Pêwîst e ravekirina welatîbûna ku hemû kesî Tirk qebûl dike, ji holê rabe û di şûna vê yekê de ravekirineke welatîbûnê çêbibe. Ya sêyemîn divê zihniyeta yek milet ji makeqanûnê bê derxistin. Di şûna vê yekê de pêwîst e bi têgeha "neteweya Tirkiyê" ravekirineke ku hemû neteweyan bihewîne, pêk bê. Ya çaremîn jî xweseriya demokratîk e. Divê rêveberiyên herêmî û meclisên herêmî bêne qebûlkirin û bihêzkirin. Ev herçar daxwaz ji bo Kurdan daxwazên sereke ne. Heta ku ev daxwaz pêk neyên, em nikarin bêjin ku pirsgirêka Kurd ber bi çareseriyê ve diçe.

## Albûmeke nû ya Hesen Kamkar tê belavkirin



**Tehran (Rûdaw) –** *Piştî 45 salan albumeke nû ya hunermendê koçkirî Hesen Kamkar ku wek bavê endamên gruba Kamkaran tê naskirin, bo belavkirinê amadeye. Navê albûmê Budahe Jenînekanî Heseni Kamkar ye.*
*Ev albûma ku ji jenînên solo yên violon pêk tê, di van rojên bê de ji aliyê şirketa muzîkê ya `Awayî Barbod` li seranserê Îran û Rojhilatê Kurdistanê tê belavkirin. Albûm bi awayê jenîna Budahe di sala 1967an de bi recordeke asayî ji aliyê Hesen Kamkar hatiye tomarkirin.*





Redaksiyona Qijika Reş, xwe wek Refa Qijikên Reş bi nav dikin

Kovareke bê serî, bê dezgeh, bê manîfesto û serbixwe

# Qijika Reş

Me xwest em bi rêvebirê kovarê re, ango bi berpirsiyarekî redaksiyonê re biaxifin. Lê jiber ku ew dixwazin xwe "bê serî" ango a-narşî nîşan bidin, bi hev re, wek Malbata Qijika Reş bersiv dan. Ev kovar di serê Îlonê de li Wanê bi hejmara xwe ya yekem ji xwendevanên xwe re got 'Merheba' Di nav redaksiyona kovarê de kesên ku xwe di hêla îdeolojîk de anarşîst dibînin jî hene, kesên ku xwe tenê azadîxwaz, çepgir, an jî demokratên bêalî dibînin jî hene. Ji hejmara duyem û pêve wê hewlbidin ku kurdî jî tevlî nava rûpelên xwe bikin û kovarê bigihînin derveyî Wanê, li hemû Kurdistanê, ber bi bajarên Tirkiyê ve, ta Ewrûpayê.

**We çima ev nav li kovara xwe kir? Qijik di wêjeyê de xwediyê çi metaforan e?**

Di zimanê me de derbarê qijikê de gelek gotinên nebaş hene. Di gelek çîrok û helbestên kurdî de qijik wek heywaneke bêxêr, nexweşik û çepel derbas dibe. Wek sembola nifir û lanetê ye. Dema ku di efsaneyekî de navê qijikê derbas dibe paşê mirin, tometbarî an jî gunehkarî tê. Ji bilî çanda çermesorkên Amerîkayê, qijik di her çandî de wiha tê binavkirin. Sucê wan ê herî mezin ew e ku goştê heywanên mirî dixwin. Gelo mirov jî goştê heywanên mirî naxwin?

Ol jî ji qijikê heznakin; Ji Ahîta berê heta niha ev dijbertî didome. Di Încîlê de, dema behsa Tûfana Nûh dibe, navê qijikê bêxêr derbas dibe; herwiha di hedîsên Hz. Muhammed de qijik yek ji wan heywanan e ku kuştina wan ne guneh e. Ji ber vê qijik bê xwedî û bê evînî, li her derê dinyayê digere, ji mirovan dûr dijî.

**Sedemê ku we navê qijike li xwe daniye, divê tenê ne ev bin?**

Belê gelek sedemên erênî hene. Qijik zîrektir heywana li rûyê dinyayê ye. Tiştê ku bixwe dixwe, tiştê ku nexwe, ango ji ber ku têr e, vedişêrê. Dikare heta çaran bijmêre. Gelek lêkolînên zanyarî îspat kirine ku qijik di çêkirin û bikaranîna alawan de ji şempanzeyan jî zîrektir in. Li Japonyayê qijik bo gûzê bişkênin metodeke ecêbmayî kifşkirine. Gûzê digrin nav pencên xwe û difirin, dema ku lambeya trafîkê sor pêdikeve, dadikevin û gûzê dixin bin tekerê seyarekî û dîsa difirin; lemba dibe kesk, seyar di ser gûzê re derbas dibe û dişkêne, qijik jî paşê tê gûza xwe dixwe. Jiber van û gelek taybetmendiyên wan ên din, me navê wan li xwe kir.

**Gelo naveroka kovara we çawa ye, bi kîjan pêdiviyan hûn vê kovarê diweşînin?**

Li bajarê Wanê, li dijî bandora kapîtalîst a global a li ser jiyanê, bi armanca ku bibin dengekî herêmî, bi teoriyên wek anti-otoriter, azadiya radîkal em ketine rê. Ev kovar li ser xaka Kurdistanê dixwaze bibe dengê anti-otoriter û polîtîkayeke azadiyê ya heterodoks. Dengên ku li derveyê dewletê, netewê û olê dimînin, digihîne hev. Ango platformeke rengîn ya deng zêde. Bêhtir anarşiya ku piştî mêtingeriyê rûdaye, ango anarşîzma Post-kolonyal wê bibe polîtîkaya weşana me. Lê ne tenê anarşîzm, herwiha femînîzm, anti-mîlîtarîzm, dijbertiya şer, sosyalzmâ lîberter, otonom û anti-kolonyalîzm jî dibin mijarên me. Dengên ku bixwazin tevlî dengê me bibin, teoriyên li derveyê dibistanan û korîdoran, ên ji nava jiyanê wê bibin rêhevalên me. Em naxwazin bibin ew neynika ku dinyayê nîşan dide, lê dixwazin bibin mûm a ku binê xwe ronî dike.

**Di kovarê de gelo ti hiyerarşî tuneye? Redaksiyon, edîtor, berpirs û hwd... An hûn bê serî ne?**

Qijika Reş ji ber helwesta xwe ya îdeolojîk li himberê hemû hiyerarşî, rêvebirî, berpirsiyarî û otorîteyan disekine. Em kovareke bê serî, bê dezgeh, bê manîfesto û serbixwe ne. Tenê grûbeke me ya kollektîf heye ku kovarê derdixe. Hemû karî ev grûba hevalan dike. Lê di hêla fermî de berpirsiyarê weşanê Sami Gorendag e, hevalên din ên ku di dezgeya weşanê de cîh digrin ev in: Zozan Ozgokçe, Ramazan Kaya, Bahattin Kizildogan, Alev Şahar, Ridvan Adsiz, M.Bulent Işik û Bilgesu Sumer e.

**Zimanê kovarê çi ye? Kurdî heye an wê hebe?**

Hejmara yekem ji ber hinek pisgirêkan, tenê bi tirkî ye. Lê ji hejmara duyem û pê ve em ê cîhekî girîng bidin gotarên kurdî jî. Herwiha em ê hinek gotaran wergerînin kurdî.

**Hûnê di civakê de bangê kê bikin?**

Civak tiştеke ne orîgînal e, eklektîk e û ji perçeyên cûda pêktê. Naverokeke wê, armanc, meş û herikandineke wê ya hevbeş tuneye. Herwiha armanca me tune ku em civakê bikin bin destê xwe. Jiber ku dema tu bixwazî civakê bikî bindestê xwe, divê tu ew alaw û hêzên ku civakê birêvedibin, wan jî bikî bindestê xwe. Em dengên ku di civakê de nikarin derkevin, yên ku ne azad in, dixwazin derxên pêş. Muxatabên me anarşîstên li Kurdistanê, komunîstên lîberter, feminist, homoseksuel, dijberên şer, dijberên leşkeriyê ne.

**Li gor we di civaka Kurd de cûreyên wiha hene?**

Beriya her tiştî em dixwazin bêjin ku em anarşîstên tûj nînin. Di nav me de kesên ku xwe anarşîst nabînin jî hene. Araşîzm çavkaniyeke girîng e ku em jê sûd digrin, lê ne bi tenê. Di civakê de gotina anarşîzmê pir şaş wateyên xwe hene. Anarşîzm ne teror e, ne tirsandine, ne êrîşên li nav bajaran ên bê wate ne. Anarşizm teoriyeke civakî ye ku ne bi jor ve diçe, lê li erdê dirêj dibe. Dixwaze ku kesayet ji hemû otorîteyan azad bibe. Wek her civakî, di civaka Kurd de jî ev bingeh heye. Projeya ku siyaseta Kurd dixwaze ava bike, 'Xweseriya Demokratîk' jî projeyeke li dijî otorîteyê ye. Ji bo ku li Kurdistanê otonomên azd bên avakirin, teorî û ezmûna anarşîzmê wê gelek sûd bide.

**Perwerde an rexne? Wê polîtîkaya weşana we çawa be?**

Herdu jî.

**Ji bo pêşerojê çi planên we hene?**

Navenda me li Wanê ye. Alîkariya hemû hevalên ku li Kurdistanê, Tirkiyê û Ewrûpayê dijîn, wê me kêfxweş bike. Em kovarêbi rêya hevalên dilxwaz belav dikin. Di demeke dirêj de dibe ku em weşanxaneyeke alternatîv, an jî navendeke çand û hunerê vekin.

***Hevpeyvîn: Mehmet Sebatli***





## Bagdaş di şêwekariyê de teknîkeke nû ceriband

# Ji gundê Sarizê ta Awistralyayê



Bagdas du hefte berê li Wanê pêşandana xwe ya yekem vekir

**Adîl Harmanci** Wan

Şêwekarê Kurd ê navdar Hasan Bagdaş piştî darvekirina pêşengê nifşa 68'an Deniz Gezmiş û hevalên wî, li bajarê Kayseriyê hat binçavkirin û ji wir wî birin Enqerê û li wir, jiber ku ew Kurd e îşkenceya taybet lê kiribûn. Serpêhatiya Bagdaş paşê li welatên xerîb didome û hunera ku di dilê wî de maye, dîsa tê pêşiya wî. Wî heta niha li gelek welatan, zêdeyî 50 pêşengah vekirine û di şêwekariyê de teknîkeke taybet ceribandiye.

Şêwekar Hasan Bagdaş beriya du hefteyan li Wanê pêşengaha xwe ya yekem vekir. Pêşengaha ku tê de tabloyên Musa Anter, Feqiye Teyran, Nazim Hikmet, mirovê ku digirî, mirovê ku seyda şêr dike, mişkê bê hêlîn û zewaca pir hevjînî hebûn, 9 roj dom kir. Bagdaş, di derbarê xebata xwe ya hunerî, pêşangeh, jiyana xwe ya şoreşgerî û serpêhatiyên li sirgûnê de, pirsên me bersivand.

**Têkiliya we çawa bi şêwekarîyê re çêbû?**

Ji dema zarokatiyê eleqeya min a şêwekariyê hebû. Beriya ku herim dibistanê, min li ser kagizên ku diketin destê min, wêneyan çêdikir. Piştî dibistana seretayî ez ketim atolyekî ku karê reklam, tabela û dekorasyonê, dikir. Ez di wê atolyê de gelek pêşketim û bûm profesyonel. Di sala 1967'an de jî min kursa şêwekariyê dît û heta îro hatim.

**Hûn wê demê rastî çi hatin, xebatên we çawa dimeşiyan?**

Piştî ku kurs bidawî bû, min atolyeya şêwekariyê vekir. Atolya min li ser rêya Lîseya Kayseriyê bû. Mamoste dihatin û li tabloyên min mêzedikirin, me çay vedixwar û sohbet dikir. Di sala 1972'an de, piştî ku Deniz û hevalên wî darvekirin, hatin avêtin ser atolyeya min jî. Bu gumana ku ezê radara li Pinarbaşî bombe bikim. Min birin Enqerê, lê jiber ku ez Kurd bûm, îşkenceyên taybet li min kirin. Piştî 45 rojan ez vegeriyam malê, ez sûnd dixwim, hevjîna min jiber birînên îşkenceyan, min nasnekir.

**Paşê çi bû?**

Binçavkirin, tada, êrîş û îşkence dom kirin. Ez êdî nikiribûm li Tirkiyê bisekinim. Ligel hevjîna xwe me koçê Awistralyayê kir. Li wir jî min têkiliya xwe ji Tirkiyê û bûyeran nebirî. Konsolvanê wê derê giliya me kir. Di debarê me de biryara girtinê hat standin û di sala 1981'an de bang kirin ku ez vegerim welat. Ez di sala 2003'an de vegeriyam. Di derbarê min de doza propagandaya li dijî dewletê vekiribûn. Paşê biryara girtinê rakirin û ji ew roj û vir ve ez li Tirkiyeyê pêşangehên xwe vedikim.

**Weke min fahm kir li Awistralyayê jî we pêşangehan vedikir. Xebatên we yên li Awistralya çawa bûn?**

Ji bilî karên siyasî ez bi hunera xwe re jî mijûl bûm. Lê ji bo debara malê diviyabû ez kar bikim. Jiber vê ez 15-16 sal di karên giran de xebitîm û di sala 1987'an de min dest bi şêwekariyê kir. Wek salekî min kursa ipekê dit, paşê jî çûm Koleja Hunerê ya Preston û perwerda boyaya bi rûn dît. Di sala 1995'an de min li Zanîngeha RMIT, di Fakulteya Hunerên Xweşik de beşa şêwekarî û Peyker kuta kir. Di heman salî de çûm Çînê û li wir di Akademiya Hunerên Xweşik de min sertîfîkaya fermî stand.

**Hûn malzemeyên çawa bikartînin?**

Ez tenê boyaya tuval û firçê bikarnaynim. Eleqeya min li ser tiştên avêtî heye. Mînak, kagizên kevin, tûrên plastîk, çerm û postên kevin, text û telaş û gelek tiştên kevin... Min di Fakulteya Hunerê de bêyî ku firçeyê bikarbînim teknîkeke nû kişf kir. Ji zemq, boyaya bi rûn û vernîkê min teknîkeke nû ya şêwekariyê ceriband.

**Gelo bûyerên ku di jiyanê de rastê we hatine, ketine nav tabloyên we?**

Bê guman, jiber ku ez hunermendekî Kurd im, di hinek tabloyên min de mijarên wek penaberî, pirsgirêkên aborî, mafên mirovan tên xuyakirin. Lê piştî k uni min re ezmûna hunera gerdûnî çêbû, di tabloyên min de mijarên wek civaka paqij, xweza, paqijiya xwezayê derketin pêş. Herwiha di tabloyên min de Musa Anter, Feqiye Teyran, mirovên ku nêçîra şêran dike, mişkê bê hêlîn jî hene.

**Hûnçawa hatin naskirin?**

Ez bi rêya du pêşangehan hatim naskirin. Ya yekem di sala 1994'an de li Awistralyayê, di galeriyeke mezin a dewletê de, ango Galeriya Victoria a Netewî de, min pêşangehek vekir. Waliyê Giştî yê Awistralyayê Sir Zelman Cohan ev pêşangeh vekir. Ya duyem jî di sala 2001'an de li ser xwesteka Serokê Parlamentoya Victoriayê di salona parlamentoyê de (Queen's Hall) hat vekirin. Wezîrê Perwerde û Hunerê Mary Delahunty ev pêşangeh vekir û li parlamentoyê parlamenter Michael Leighton di derbarê pêşangehê de axifî. Herwiha li Brîtanyayê jî min pêşangehek din vekir.



**Bîografî**

Di sala 1949'an de li bajarê Kayseriyê, li gundê Dallikavak a biser Sarizê hatiye dinyayê. Di sala 1973'an de wek penaper koçî Avustralyayê kir û heta niha li gelek welatan zêdeyî 50 pêşangeh vekiriye.

## Hevjîna Mihemed Şêxo bang li Hikûmeta Kurdistanê dike:

# "Dezgeheke hunerî bi navê Mihemed Şêxo ava bikin"



**Dilbixwîn Dara** Uppsala

Nesrîn xanim ku weke Diya Felek jî tê naskirin, jiyana xwe, bi salên dûr û dirêj di nava êş û azariyê de derbas kiriye. Piştî ku ew bi Mihemed Şêxo re zewicî, êdî zehmetiyên jiyanê ji bo wê dest pê kirin.

Lê belê jiyana ligel Mihemed Şêxo, hem ew kêfxweş kiriye hem jî êşandiye.

Diya Felek dibêje, berî ku ew Mihemed Şêxo bibîne û pê re bizewice, wê ew di xewna xwe de dîtibû û di xewna xwe de aşiqî wî bûbû. Piştre ew xewn bûbû rastî.

Mihemed Şêxo bi xwe li rojhilatê Kurdistanê mamosta bû, Nesrîn ku ji Mehabadê ye û keça pêşmergeyekî Pêşewa Qazî Mihemed e, şagirta wî bû.

Diya Felekê wiha dibêje: "Dilê min kete Mihemed, min ji wî hez kir, hezkirina min ji xewnê dest pê kir, ez aşiqî wî bûm. Hunermendiya wî li aliyekî, ew însanekî gelekî durust bû, welatparêz bû, xemxurê miletê xwe bû."

Nesrîn Xanim diyar dike ku ji ber hezkirina wê ya zêde ji Mihemed Şêxo, wî çi bigota û çi bixwestiba wê nedigot na, ew her razî bû. Nesrîn Xanim wiha dibêje: "Dema em zewicîn, me li mala bavê min daweteke biçûk çêkir, di şahiyê de Mihemed Şêxo stranek jî got, dema ku min dengê Mihemed Şêxo bihîst, gelekî giriyam, nikaribû xwe bigirim."

Diya Felekê dibêje, di malê de ew bi hev re bi soranî diaxifîn, Mihemed Şêxo hem bi soranî, hem jî bi farisî baş dizanibû.

Nesrîn Xanim, weke ku ji wî hez dikir, her wiha ji zaravayê wî jî hez dikir, dixwest fêrî kurmancî bibe, fêr bû jî.

Niha dema ku bi kurmancî diaxife, yek nikare bizanibe ku ew ji rojhilatê Kurtdistanê bajarê Mehabadê ye. Dema ku diaxife, tu dibêjî belkî ji heft bavan û vir de ew li Qamişlo dijî.

Ew 27 salan li Qamişlo jiya ye. Eger rojekê ji rojan ji Swêdê vegere Kurdistanê, ewê li Qamişlo bi cih bibe.

Di hevpeyvîneke taybetî de Diya Felek diyar dike ku Mihemed Şêxo negihişt wesiyetnameya xwe bibêje, lê belê wî her demê dixwest beşekî ji Kurdistanê azad bibîne.

Di dawiyê de Diya Felek ji hikûmeta Kurdistanê daxwaz dike ku li başûr dezgeheke hunerî, rewşenbîrî bi navê Mihemed Şêxo ava biki.

# "Ez Kurdistaneke bi tirkî naxwazim!"

**Robîn Boti** Zurich

Hesen Huseyîn Denîz, ligel nivîskariya xwe, ev çend sal e li Swîsrê mamostetiya zimanê kurdî jî dike. Ji bo ku zimanê kurdî bi Kurdan bide hezkirin, her tişt kiriye, lê ji sersariya Kurdan a ji bo zimanê xwe re jî ecêb maye. Li kantonên Zurich û Chûrê dersên kurdî/kurmancî dide kesên gehiştî û zarokan. Mamosteyê zimanê kurdî Hesen Huseyîn Denîz ji Rûdawê re behs kir ku niha bi qasî 15 xwendekarên wî hene ku temenê wan di navbera 7-14'an de ye: "Piştî kursa zarokan qasî saetekê li komeleyê em bi dayîk û bavê zarokan re dersê didomînin. Kursa li Zurichê niha bi 6 xwendekaran didome, 2 ji wana Swîsreyî, yê din Kurd in. Cihê kursê avahiya çandê ye, me kirê kiriye, kirya wê xwendekar ji nava xwe kom dikin û didin."



Mamoste Hesen Huseyîn Denîz naxwaze kurdî di bin siya tirkî de wekî zarokê jinbavê bimîne

## Mamoste, werger, aborînas û karker fêrî kurdî dibin

Denîz diyar dike ku di nav şagirtên wî de mamoste, werger, aborînas û karker hene, "Kesên Swîsreyî pirahî yên dostên Kurdan, an jî bi Kurdan re zewicî ne, yan di nava têkiliyê de ne. Yên Kurd jî ciwanên ku di malbatê de bi tirkî hatine mezinkirin, lê niha dixwazin zimanê dayikê fêr bibin."

Di dema destpêka kursan de, di destê wî de meteryal/ pirtûk tune bûne, lewma wî sê pirtûkên kursê yên bi wêne û kurdî-almanî amade kirini, "Em li ser wana dersan dimeşînin. Bêguman me çapxaneyek nedît ku ji me re belaş çap bike, ji bo wê em bi derfetên xwe, li gorî hijmara xwendekaran zêde dikin. Zehmetiya herî mezin ew e ku dayik û bav, Kurd bi giştî bi xemsarî nêzî fêrbûna zimanê xwe dibin."



Di rojeva wan de jî tiştekî wiha nîne. Lê ez hêviya xwe ya çêkirina akademiyeke wiha ti caran winda nakim, rojekê ez ê çêbikim, an li vir, an li welêt, an li wê dinyê. Lê divê ev akademî bê damezirandin

Ew lê zêde dike ku di destpêkê de Kurdên Zurichê baldariyeke baş û xurt dane zimanê kurdî, "Wekî bayekî ku hilbibe, gelek kes him bi xwe tevlî kursan bûn û him zarokên xwe şandin. Ji ber ku tiştekî nû bû, jê heyecan girtin." Lê bi dilekî şikestî wiha berdewam dike, "Lê bi demê re wekî her tiştên din ên li Ewrûpa ku ji rêzê tên bidestgirtin, baldariya li ser ziman jî her ku çû kêmtir bû. Piranî dibêjin: "Ma em kurdî li ku bikar tînin ku fêr bibin, an wê li ku derê bi kêrî zarokên me bê: civîn bi tirkî ne, pirtûk bi tirkî ne, notên hevdîtinê bi tirkî ne; em ê çi bikin ji kurdî?"

## Xanima Swîsreyî: "Zimanekî ku her kes dixwaze bikuje, hûn didin jiyandin!"

Dû re ji me re behsa serpêhatiyeke xwe ya balkêş dike, bê çawa Ewrûpî girîngî didin fêrbûna zimanekî, "Rojekê jineke xebatkara beşa civakî (Sozialarbeiterin) hat tevlî kursa me bû, piştî du hefteyan lêborîna xwe xwest û got 'Dema min nîne ku ez bidomînim, lê dixwazim kirya kursa we ya dewreyekê ez bidim'. Min got 'xwendekaran ji xwe kirê dane, pêwîst nake hûn bidin.' Li ser vê yekê jinikê got: 'Ez dixwazim bidim, ji ber ku hûn karekî pîroz dikin, zimanekî ku her kes dixwaze bikuje, hûn hewl didin ku bidin jiyandin. Ji bo vê dixwazin alîkariya we bikim.' Min got: Hûn dostaniya Kurdan bikin, alîkariya herî mezin wê ev be.' Ev jineke Swîsreyî bû. Ji gelek Kurdan baştir rewşa zimanê kurdî fêm kiribû."

## Dixwaze Akademiya Zimanê Kurdî veke!

Denîz dixwaze ku li Swîsreyê akademiyeke mezin ji bo xebatên ser zimanê kurdî veke, lê dibêje ku mixabin ne Kurd, ne partî û rêxistinên Kurdan, ne jî karmend û dewlemendên Kurdan di vê mijarê de ne xwediyê ti xewn û xeyalan in, "Di rojeva wan de jî tiştekî wiha nîne. Lê ez hêviya xwe ya çêkirina akademiyeke wiha ti caran winda nakim, rojekê ez ê çêbikim, an li vir, an li welêt, an li wê dinyê. Lê divê ev akademî bê damezirandin. Ji çandê bigir heta wêje û dîrokê, mirov lê her tiştî bi kurdî bixwînin, fêr bibin, lêbikolin û bêgoman pirtûkxaneyeke xwe ya mezin a ji pirtûkên kurdî hebe."

## Kurdî di bin siya tirkî de wekî zarokê jinbavê dihêlin

Mamosteyê zimanê kurdî Hesen Huseyîn Denîz di dawiyê de balê dikişîne ser ku çavê gel li sazî, rêxistin, partî û hevalan in, "Heta ew bi xwe di hemû kar û xebatê de pêşengtiya zimanê kurdî nekin, bi kurdî neaxivin, nenivîsînin, necivin, rûmeteke pêşemîn nedin zimanê kurdî, her gav bi mahneya nezanbûnê, nikarîbûna xwe îfadekirinê û hwd., kurdî di bin siya tirkî de wekî zarokê jinbavê bihêlin, xuya ye wê gel bala xwe nede ser perwerdeya bi kurdî. Ez bi xwe Kurdistaneke bi tirkî naxwazim."

# NY ji bo piştgiriya jinên Îraqî xwe amade dike

**Ebdulla Nihêlî** Dihok

Ev sê meh in Neteweyên Yekgirtî (UN) bi rêya rêxistina UNHSP û saziyên peywendîdar ên Îraq û Kurdistanê ji bo kêmkirina tundûtûjiya li dijî jinan li Îraq û Herêma Kurdistanê, hewl didin planeke 4 salî deynin. Endama Parlamenê Îraqê li ser lîsta PDK'ê li Fraksyona Hevpeymanî ya Kurdistanî, Cula Hacî, ji bo Rûdawê ragihand ku civînên danîna vê stratejiyê li Kurdistanê hatin sazkirin û ji bo cîbicîkirina vê stratejiyê lîjneyeke hevbeş hat pêkanîn.

Li gor biryara UN a 1325 ku di Mijdara 2000'an de derket, hatiye diyarkirin ku UN hewl dide girîngiyê bide rola jinan û piştgiriya wan bike ji bo ku di danîna yasa û derxistina biryaran de beşdar bibin û mafên jinan bên parastin. Li gor vê biryarê û ji ber ku Îraq jî yek ji van welatane ku tê de şer heye, loma UN bi rêya rêxistina UNHSP stratejiyeke 4 salî bi mebesta kêmkirina tundûtûjiya dijî jinan li Îraqê, datîne.

Endama lîjneya danîna vê stratejiyê çalakvan, Cula Hacî, got: "Ji bo danîna vê stratejiyê çend civînên berfireh li Hewlêrê hatin lidarxistin. Ev civîn ligel çalakvanên jin, saziyên civaka sivîl û wezaretên peywendîdar li Herêma Kurdistanê û Îraqê hatin sazkirin. Dema UN xwest civînên danîna vê plana stratejîk li Kurdistanê saz bike, daxwaz kir ku civînan li civata bilind a jin û afiretan girê bidin, lê ji ber nebûna ti civatên bilind li Kurdistanê ev civîn li Rêvebiriya Giştî ya Şopandin û Nehiştina Tundûtûjiyê dijî Jinan li Kurdistanê hatin girêdan."



Cula Hacî kêfxweşiya xwe derbarê hebûna Rêvebiriya Giştî ya Şopandina Tundûtûjiyê li Kurdistanê nîşan da û got: "Em Kurd şanaziyê dikin dema li cem UN û Ereban behsa Rêvebiriya Giştî ya Şopandin û Nehiştina Tundûtûjiya dijî Jinan li Kurdistanê dikin."

Lê Cula Hacî diyar dike ku aliyê Kurdistanî di gotûbêjan de hest bi şermezariyê jî kiribû: "Rast e di van gotûbêjan de behsa serpêhatiya baş a Herêma Kurdistanê hat kirin û dixwestin serpêhatiya Kurdistanê ji bo Îraqê jî bê veguhastin, ji ber li başûr û naverasta Îraqê revandin û destdirêjiyên ser jinan hene, li Kurdistanê ev tişt nînin, lê dema ku UN di raporên xwe de behsa sinetkirina jinan dikir, me wek şanda Kurdistanê hest bi şermezariyê dikir."

Li gor agahiyên Cula Hacî pereyên ji butçeya hikûmeta Îraqê ji bo UN tên di 4 salên 2010-2014'an de wê li ser kêmkirina tundûtûjiya dijî jinan li Îraqê kar bikin. Rêvebiriya Giştî ya Şopandin û Nehiştina Tundûtûjiyê dijî Jinan li Kurdistanê, ku berî sê salan li ser biryara serokê kabîneya berê ya hikûmetê, Nêçîrvan Barzanî, hatiye avakirin, beşên wê li hersê parêzgeh û qezayên Kurdistanê hene.

Kurde Umer ku niha bûye rêvebira giştî ya vê dezgeha hikûmî ji bo Rûdawê daxuyand: "Aliyên peywendîdar ên Îraqê û UN gelek bi kar û çalakiyên rêvebiriya me kêfxweş bûn. Wezareta Karê Hundir a Îraqê pêşniyar kir em hevkariya wan bikin û nehiştina tundûtûjiya dijî jinan li seranserê Îraqê vekin û tecrubeya niha ya Kurdistanê ji bo tevahiya Îraqê bê veguhastin."

Herwiha Kurde Umer da zanîn ku di van gotûbêjan de UN pêşniyar kir ku serpêhatiya welatê Fas û Urdunê di van 4 salan de li Îraqê bê peyrewkirin û wiha axaftina xwe bidawî anî: "Da bikarin li Îraqê jî bo jinan yasayên taybet bên guherandin."

Wekîlê berê yê Ezher, Mehmûd Aşûr, bo Rûdawê:

# Selahedînê Eyûbî ji bo Kurdistanê serbilindiyek mezin e

**Mehmûd Xelîl Zergezewî**
Qahîre

Şêx Mehmûd Aşûr xwe wek dostekî gelê Kurd dide naskirin û buhayê vê dostaniyê jî daye. Piştî ku sala 2001'an serdana Herêma Kurdistanê kir, balyozê wê demê yê Îraqê li Misrê bi hinceta ku bi awayekî ne yasayî û bê derbasbûna di Bexda de bi rêya Sûriyê hatiye Kurdistanê, gilînameya rêjîma Îraqê gihand desthilatdarên Misrê û loma jî ji postê xwe hat dûrxistin.

Şêx Aşûr ragehand ku bi naskirina Kurdan ji nêzîk ve kêfxweş bûye, sipasdariya xwe jî bo Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî tekez kir ku dema li nexweşxaneyeke Londonê nexweş bû, Hoşyar Zêbarî şande cem wî. Derbarê seqa û xwezaya Kurdistanê jî got: "Ew xweşikiya min li Kurdistanê dît, dibe min tenê li Malaysiya dîtibe", lê dema me derbarê Enfal pirsiyar jê kir, di cîh de daxwaz ji me kir ku teybê bitemirînin û jê re ron bikin mebesta me ji Enfal çî ye. Piştre got: "Ev dijminkariyeke qirêj e" û Saddam û dar û destên wî wek Fîrewnan dide zanîn.


Şêx Mehmûd Aşûr

Dema derheqê helwêsta wî ji kesên ku bi awayekî berdewam Kurdan wek hevkar û kirêgirtiyên Îsraîlê tometbar dikin, me pirsiyar jê kir, keniya û got: "Ew heman kes in ku Ezhera şerîf û şêx û mamoste û xwendekarên Ezher tekfîr kirin û ez û xêzana min jî kafir jimartin, tevî ku em wê demê li Heccê bûn. Min jî got hûn nezan in û ti peywendiya we ligel Îslamê nîne. Zêde guh nedin hizr û nerînên wan, dibêjim Îslama rasteqîne li Kurdistanê cihgîr e, lê van kesan ola Îslamê herifandine."

Wekîlê berê yê Ezher pesnê rola mezin a zanayên Kurd di xizmetkirina ola Îslamê de da û got: "Ji bo birayên me yên li Kurdistanê ewqas bes e ku Selahedînê Eyûbî, serkirdê mezin, serkeftina Îslamê ser xaçperestan de bicîh kir, di dema ku van xaçperestan dixwest ola Îslamê ji ser rûyê dinyayê rakin. Selahedîn bû ku Ezhera şerîf ji mezheba Şîî guherand ser mezhebê Sunnî. Dîrok heta hetayê navê wî zindî dihêle, ev rûmet û pêgeheke mezin e ji bo xelkê Kurdistanê ku qehremanekî wiha mezin ji nav wan derketiye ku heta dinya hebe wê ji ser zar û zimanan navê wî neyê xwar."

Şêx Mehmûd Aşûr nexwest derbarê dagirkirina milk û malê Kurdan di çarçoveya siyaseta Erebkirin û koçberkirinê de biaxife lê got: "Ev mijareke siyasî ye û nabe bi vî awayî biryar li ser Îslamê bê dayîn" û da zanîn ku ola Îslamê tekezî li ser biratiya navbera Misilmanan dike, di vê çarçovê de jî Îslam dagîrkirina mala Misilmanekî ji aliyê Misilmanekî din bi tevahî red dike.

Bi baweriya Şêx Mehmûd Aşûr Erebkirin û raguhastin mijarên siyasî ne û têkiliya wan ligel olê nîne: "Her dema siyaset tevî olê hat kirin, ol tê têkdan."

# Dilxirabî bû sedemê kuştina dayika 12 zarokan

**Necîbe Mihemed** Hewlêr

Ev 30 sal bûn ku Fazil û Niştiman zewicîbûn. Dayik û bavê 12 zarokan bûn, ku sê keçên wan mêr kirine û 4 kurên wan jî jin anîne û malên xwe vekirine, 5 zarokên wan ên din jî (4 keç û kurek) ligel wan dijîn.

Şerekî devkî di navbera zarokên wan de dawî li jiyana Niştîman anî. Keça wan Hêlîn şahidiyê dide ku bavê wê herdem wek dijmin berê xwe daye dayika wê: "Bavê min neyarê dayika min bû, dema wê didît wek dijminê xwe lê mêze dikir."


Niştiman Mecîd

Roja 30'ê Tebaxê 2010 li kolaneke taxa Teyrawe ya bajarê Hewlêrê dengê çend guleyan hat ku ji aliyê Fazil Seîd (47) hatin teqandin, dawî li jiyana Niştîman Mecîd (45) anî.

Hêlîn Fazil (8) ku di dema kuştina dayika xwe de li mal bû, çîroka kuştina dayika xwe wiha vegot: "Birayê min ji xwîşka min re got betaniyekê ji min re bîne, jê re ne anî û şer kirin, dayika min şimaqek li birayê min da, bavê min hêrs bû, me jî ligel dayika xwe derî li ser xwe girt, lê bavê min bi bêrê derîn şikand û em derxistin derve. Bavê min 4 gule li dayika min rijand, dema me dît dayika me di nav xwînê de maye, em reviyan mala cîranê xwe, lê newêrîbûn bi hawara dayika min ve bên, dû re bavê min otomobîlek girt û em birin gundekî ku xizmên bavê min lê hene."

Fazil piştî dû rojên veşartinê, bi hevkariya kes û karê wî ji aliyê polîsan ve hat destesergirtin.

Kes û karên Fazil diyar dikin ku navbirî bi nexweşiya `dilpîsiyê` ketibû.Tariq Seîd (30) birayê Fazil e û derbarê nexweşiya birayê xwe de dibêje: "Ev şeş sal in birayê min bi nexweşiya dilpîsiyê ya pisîkolojîk ketibû, car caran çavên wî sor dibin û demarên milên wî tund dibin û hêrs dibe, dema hêrs dibe dikare her karekî bike. Sê caran birayê min ê biçûk wî biriye Îranê û hemû doktorên baş ên vir ew dîtine."

Ji ber vê dilpîsiyê, Fazil bê navber bi guman berê xwe dide jina xwe û di nava her şeş salan de mala xwe bir nêzîka 30 cihan. Tariq wiha axifî: "Bi awayekî tevahî mejiyê Fazil têk çûbû, jina wî li mala xwe ligel birayê xwe jî bipeyiviya digot xwiyaye tiştekî wê ligel heye, me pir bi kêmanî serdana wan dikir. Dema Fazil mala xwe dibir taxekê li ber derî rûdinişt û kesek di kolanê de biçûya ne bi dilê wî bûna, mala xwe bar dikir û digot ev der bi kêrî min nayê."

Xaniyê ku niha mala Fazil tê de ye, çirûseke ronahiyê ji derve nayê hundir, Fazil hemû pencere û kulekên ku heye ronahî jê bê hundir girtiye.

**Tendirustî**

# Roviya zirav


Dr. Necla Tursun*

Roviya zirav piştî mîdê destpê dike û ji 3 beşan pêk tê. Bi latînî: duodenum (derdora 24 cm), jejunum (1,2 metre) û ileum (1,8 metre) jê re tê gotin, bi tevayî roviya zirav derdora 3,24 metre direje. Fonksyona roviya zirav xwarina ku di mîdê de hatî hesifandin, hîn hûrtir bike û di nav de tiştê bi fêde, madeyên ji bedenê re pêwîstin, bixe nav xwînê de. Ew xwîn jî diçe kezeba reş.

**Çi nexweşî bi roviya zirav re çêdibin?**

Dr. Necla Tursun: Bi roviya zirav re piranî nexweşiya zikçûn tê xuya kirin, ew jî ji ber vîrus, mîkrob, xwarina kevin, an jî derman. Ev dikarin bibine sedema nexweşiya zikçûn û kulbûna roviya zirav. Ev yek ne xeternake, lê ji ber ku bi zikçûnê mirov gelek avê winda dike, dive ku mirov pir av vexwe, an jî serum bê girtin. Ew kes bê derman jî dikare saxlem bibe, lê dema ku pir av hat windakirin, pêwîste serum bê dayîn. Ji ber hinek cûreyên xwarinê hene ku nayên hesifandin, mînak: hinek xwarinên ji cureyê genîm çêdibin nayên serifandin, ji ber ku enzîm di roviya zirav de kêm e. Wekî din şîr jî nayê hesifandin, ji ber ku bi hinek mirovan re jî enzûma ku şîr bike perçe perçe tune. Jê re 'Laktozeintolerans' tê gotin, ev yek jî genetîke, saxlembûna van herdu nexweşiyan jî tune. Lê dema ku ew kesên ku ji van xwarinan nerihatiya wan heye, dema wan nexwin, wisa dikarin xwe biparêzin. Hate niha bi awayekî zanistî sedema van nexweşiyên kronîk nehatiye dîtin. Nîşanên wê: car caran arandin û zikçûn.




**Dermanê vê nerihetiyê çi ye?**

Derman hene, ku hinek be jî, alîkariyê dike. Carnan jî dibe ku emeliyat pêwîst be. Lê saxbûn dîsa tune. Herwiha wek gelek organên bedenê, bi roviya zirav re jî carnan pençeşêr tê dîtin, lê ev yek gelek kêm e. Li gor îstatîstîkan, ji 25.000 mirovan salê yek bi pençeşêra roviya zirav dikeve. Dema ku mirov zû tespît bike, hîn xwe li bedenê belav nekirî, bi emeliyatekê ew kes ji xeterê xilas dibe. Lê ji ber ku nîşanên wê pir kêm in û pir dereng tê kifş kirin, hinekî zor dibe.

**Dema ku roviya zirav hemî bi emeliyatê bê jêkirin, wê demê çi dibe?**

Ew wezîfe, ango fonksiyona hatî bahskirin, wê kêm bibin. Wê xwarin baş neyê hesfandin, ew xwarin wê zû ji mîdê berbasî roviya qalind bibe. Ew mirov hertim di bin bandora tenduristiyek nebaş de ye. Wê kîloyê xwe winda bike û zû zeîf bibe, lê mirov dikare bêyî roviya zirav jî bijî.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

**Dr. Necla Tursun** *ji Bakurê Kurdistanê ye, niha li Almanya dijî û pizîşka nexweşiyên hundir e.*

# Gorefiroşê Silêmaniyê dixwaze bibe Rockefeller

Newzad Mehmûd Silêmanî

Eger mamosteyê medresê jê re negota ‘nebe mele, çavên bazirganan bi te re heye’ wê bibûna xwediyê jiyaneke din. Lê ew niha bazirganeke mezin e ku ti bendan nas nake.

Tevî ku beşek ji rojên zarotiyê bi xeyala ku bibe ‘mela’ li hucreyên mizgeftan derbas kir, lê li dawiyê melayekî devera wan Quranê ji destê wî werdigre û daxwaz jê dike ku nebe mela. Li bazarê serê xwe derxist û bû bazirgan, wî nekarî qonaxa navendî ya xwandinê jî xilas bike û û xeyala hucreyê jî nedomand, lê bû bazirganekî serkeftî. Niha Gore firoşê Silêmaniyê yek ji navên herî naskirî yê Silêmaniyê ye û dixwaze bibe Rockefeller ê Kurdan.


Beşek ji projeya Asûde ya li Silêmaniyê

**Biografî**



*Yasîn Mehmûd Reşîd sala 1975’an ji dayik bûye. Ew du salan dilê wî ketiye keçekê û hinek helbestên evîndariyê jî nivîsandine: "Lê di sala 1993’an de ji ber îflasbûnê, dawî li evîndariya min jî hat û ew keça min ew dixwest, ji ber desttêwerdana keçeke din ji destê min çû." Di sala 2000’an de jiyana hevjîniyê pêk tîne û niha keçeke wî ya 8 salî bi navê Diye heye, ku ew komelgeha werzişî ya ji bo werzişkaran ava dike bi navê keça wî ye. Tevî ku ketin û îflasbûnê ew zor westandine, lê dibêje ger careke din jî îflas bibe ew amade ye dest bi firotina goran bike: "Erê, ya girîng ew e ku herdem piyên te li bazarê bin û karên xweşik û xizmetê pêşkêşî kesê heramberî xwe bikî."*

### ‘Xwendingeha ser sînor’

"Di 6 saliyê de, ku temenê min ne temenê hizrînê bû, herdem min hizra wêya dikir çawa bikarim ligel mamoste û mezinan têkiliyan dirust bikim." Mamosteyê Mela Yasîn di pola dûyem a seretayî de wiha behsa wî dikirin: "Hişê te pir ji temenê te mezintir e."

Ew niha di rojên kar ên herî bi qerebalix de, behsa rojên destpêkê dike, di pola 5 ê seretayî de, her ku ji xwendingehê vegeriyaye ligel bavê xwe çûye ser deriyên sînor: "Deftera hesaban a bavê min digirt destê xwe û bi awayekî hisabên bavê xwe tê de radigirt ku ti tiştê de wenda nedibû." Lê biryar dide yekem dersa bazirganî destpê bike: "Min 10 Dînar ji bavê xwe wek deyn standin û min dan bi gore û blûzên zarokan û min danî li Silêmaniyê li cadeya Mewlewî ligel çend hevalên xwe difirotin."

Piştî 35 salan Mela Yasîn dilteng dibe bi zarok û ciwanên niha: "Nizanim zarokên niha çima wiha tembel û bêxîret in." Niha jî li bîra wî ye, hîtera ew elektrîk ku anîbû Silêmaniyê û bi 15 Dînaran firote mamoste Şêx Mihemed Daruxa û 8 Dînar jê qazanc kirin.

"Ew yekem ciwanê Silêmaniyê bû ku di pola 6’ê seretayî de bû xwediyê hezar Dînarên Swêsrî (Dînarê Îraqê yê orgînal).

### ‘Şîretkarê hucrê’

Ew wek Mela Yasîn tê binavkirin, lê di rastiyê de ew ne mela ye. Wî demekê pir bi germî serdana hucreya mizgeftê dikir û dersên melatiyê dixwendin: "Rojekê melayekî naskirî ji min re got bi çi ve mijûl î? Min got dixwazim bibim mela, lê wî got hejmara melayên Kurdistanê zêde ye, rengê te yê bazirganekî ye, loma nebe mela." Wek dewlemendtirîn zarokê serdema xwe, ew bi 1000 Dînarên Swêsrî yên wê demê, ji hucreyê berê xwe dide sûkê û çend hevalên xwe yên zarok jî tîne nav kar û sala 1991’an bi buhayê 300 hezar Doləran cigareyên Kargeha Cigareya Silêmaniyê ji Eniya Kurdistanî dikire.

Sala 1996’an di temenê 21 salî de bi karê anîn û birina kel û pelan rêya Silêmanî-Bexda hildibijêre û asoyê xewnên xwe berfirehtir dike, li Bexda nasnavê mela lê tê kirin: "Di Remezanê de li Bexda dema li otêlê dimam, her şev hevalên min, min hişyar dikirin da paşîvê amade bikim, êdî wan nasnavê Mela Yasîn danîn ser min."

### ‘Serkêşî’

"Ewê bixwaze di jiyanê de serkeftî be, divê serkêş be." Ev yasa jiyana Mela Yasînê xwediyê şîrketa Berêz e. Hevalekî wî bi serkêşiyên wî ecêbmayî ye û dibêje: "Xala ku Mela Yasîn ji hemû hevalên wî cuda dike serkêşî ye. Herdem li bazarê bû û qet li ketin û îflasbûnê nediwestiya, ew qet bê îrade nebûye." Tariq Necîb hevalekî Mela Yasîn e ku ji firotina goreyan ta destpêkirina karê avakirinê bihev re bûn û li gor wî, ew di têkiliyan de xwediyê sihêrbaziyekê ye. Wî du caran îflas kiriye, sala 1991 û 1993’an, ew dibêje: "30 rojan ji ber nebûna pereyan û kirêya otobusê, ez bi peya diçûm û dihatim.” Qet ew roj ji bîra wî naçe, dema hemû hêviya wî ew bû qedeheke pepsi vexwe.

### ‘Vegera li bazarê’

Piştî 10 salan Mela Yasîn rojekê diçe kolana Mewlewî, hevalek gazî wî dike: "Were ez ê 50 hezar Dînarên Swêsrî bidim te û otombîlekê bikire û ligel min kar bike." Ji wê demê dikeve ser rêya xwe: "Di nava 6 mehan de, min 50 hezar Dînarên wî danê, dikanek ji xwe re vekir û weke bazirganekî biçûk min çend jeneratorên elektrîkê li taxên Silêmaniyê danîn." Di zivistana 2005’an de, birayên Mela Yasîn ên li Ewrûpa hizra damezrandina şîrketekê dan wî û hin pere jî jê re şandin ji bo damezrandina şîrketekê bi navê Berêz: "Ev navê zaroka hevalekî min bû, ku pir pê sersam bû û zarokê xwe tê de dibînim, niha ew zarok li şîrketa me kar dike û ev 8 sal in karmenda min e." Şîrketa Berêz, xwediya yekemîn hizra niştecihbûnê ye li Kurdistanê ku bi navê projeya Asûde, 25 hezar avahiyên niştecihkirinê li parêzgeha Silêmaniyê cîbicîh dike. Ew herwiha yekemîn şîrketa Kurd bû ku dergeh û pencereya PVC aniye Kurdistanê û Mela Yasîn yekem bazirgan bû li Kurdistanê garantiya civakî ji bo karkerên xwe cîbicî kir.

Ev bazirganê ku dema 10 salan li Silêmaniyê kirêçî bû, soz dide heta dawiya îsal 3210 malbatên kirêçî herin nav xaniyên xwe û hizra wêya dike, heya du salên din, şaxên şîrketa xwe li hinek welatên navçeyê veke. Mela Yasîn red dike, ti berpirs û partiyek di vê şîrketê de hevbeş bin û dibêje li Komelgeha Asûde, çend şîrketên navxweyî bi awayekî destpêkî hevbeş in, ku yek ji wan Kompanya Nokane û pişka wê ji sedî 10 e.

### ‘Rockefeller ê Kurd’

Rockefeller ku yek ji bazirganên herî mezin ên Amerîka ye û taybetmendiya xwe di jiyan û bazirganiyê de parastiye, Mela Yasîn wî pir diecibîne, ew rexne li bazirgan û sermayedarên Silêmaniyê digre ku ji bilî karê bazirganî, projeyên avakirinî nadin welatên xwe û dibêje: "285 kes li Silêmaniyê hene ku serweta wan zêdeyî 5 milyon Dolar e û ya 4 kesan jî zêdeyî milyar Dolarî ye, divê ev bazirgan projên bê beramber li taxan dirust bikin, lê mixabin bazirganên me hest bi berpirsiyariyê nakin."

# Aboriya Tirkiyê pêş dikeve, hejmara betalan jî mezin dibe



Li gor daneyên Saziya Îstatîstîkê ya Tirkiyê (TUIK) li gel ku ji sala 2002’an ve aboriya Tirkiyê bi lez pêş ketiye jî, dijberî vê yekê hejmara betalan derketiye 2 milyon û 751 kesan. Hîndekarê Fakulteya Zanîstiyên Îktîsadî û Îdarî ya Zanîngeha Gazî ya Enqereyê Prof. Dr. Îşaya Uşur, diyar kir ku mezinbûyîna heyî, diçe torên fînansê û betaliya heyî jî encama kapîtalîzmê ye.

Uşur got ku mezinbûyîna aboriya Tirkiyê girîng e, lê asta mezinbûyînê di bin asta tê xwest de ye. Uşur da zanîn ku aboriya Tirkiyê girêdayî serfkariya navxweyî û sermayeyê derve ye.

Uşur destnîşan kir ku li Tirkiyê asta betalan ji rêjeya tê gotin, gelek zêdetir e û da zanîn ku karkerên ku li gorî 4/C’yê dixebitin jî dikarin tenê 10 mehan bixebitin.

# Artêşa tirkan 5 mintiqayê Dêrsimî şarî rê qedexe kerdîy

**Dêrsim (Rûdaw) -** Sererkanîya artêşa tirkan Dêrsim de 5 mintiqayê cîyayî 17ê êlule ra hetanî 17ê kanûna 2010î şarî rê qedexe kerdîy.

Goreyê malumatê ke sererkanîya tirkan da, mintiqaya hîrêgoşeyê Mamekîye-Pilemûrîye-Pulurî de, gelîya ke mîyanê Pilemûrîye û Qisle de, mintiqaya Elîboxazîya ke mabeynê Qisle-Xozat-Çemişgezekî de ya, mintiqaya dereyê Qutîyî ke nêzdîyê Mamekîye de yo û koyê Mercanî û koyê Mizurî ke sînorê Dêrsim-Erzinganî yê 17ê êlule ra hetanî 17ê kanûna 2010î şarî (siwîlan) rê ameyê qedexe kerdene.

# MHME dewaya Hrant Dînkî de Tirkîya mehkum kerde

Mehkemeya Heqanê Merdiman a Ewropa (MHME) dewaya ke merdimanê Hrant Dînkî akerdbî de Tirkîya sucdar dîye û bi dayîşê 133 hezarî awro mehkum kerde. Tirkîya do nê pereyî ra 100 hezar awro seba cinî û domananê Hrant Dînkî, 5 hezarî awro seba birayê Hrantî Xosrof Dînkî û seba mesrefê mehkeme zî 28 hezarî 595 awroyî bido.

MHME panc muracatê cîya-cîyayî ke wextanê cîya-cîyayan de hetê merdimanê Hrant Dînkî ra virazîyabîy dewa de heme pêresnay û qerar da. Qerarê xo de da zanayene ke, madeyanê Peymana Heqanê Merdiman ya Ewropa ra madeya 2. ke derbarê heqê cuye de ya hem hetê esasî ra hem zî hetê ûsulî ra îhlal bîya, madeya 10. ke derbarê azadîya îfadeyî de ya îhlal bîya û madeya 13. ke heqê muracatî tenzîm kena zî îhlal bîya û bi no qayde Tirkîya mehkum kerde.

Muracatê merdimanê Hrant Dînkî de îfade beno ke "dewlete derbarê pawitişê heqê cuya Hrant Dînkî de mesulîyetê xo nêardo ca û bi qaso ke îcab keno kerdoxanê hêrîşî tehqîq nêkerdê". Hewna, verê cû zî gama ke "Hrant Dînk Tirkîya de ame mehkeme kerdene û mehkum bi, dewlete bi nê qerarî o kerd hedefê nasyonalîstanê tirkan."

Badê ke Tirkîya hetê MHME ra mehkum bîye, qerar da ke do eleyhê qerarî de muracatê Daîreyê Berzî nêkero. Yanî, qeraro ke dîyayo do qebul bikero.

Derheqê qerarê mehkema de wezaretê karê teberî yê Tirkîya yew beyanat vila kerd ke tede îfadeyê "seba ke qerarê mehkeme tetbîq bibo xebatê ke îcab kenê do bêrê kerdene û seba ke îstîqbal de îhlalê winasî tekrar nêbê zî do her tewir tetbîrî bêrê girewtene."

Cinîya Hrant Dînkî Rakel Dînk derheqê qerarî de rojnameyê Agosî de bi vengêko bermin yew beyanat da çapemenîye û va, "Qeraro ke MHME dayo, seba Hrantî yew dîyarîya sergêra ameyîşê dinya ya. Eke weş bîyêne mehqeq nê qerarî ra zaf zerrweş bîyêne." Rakel Dînk, dima da zanayene ke do hemeyê tezmînatî mîyanê hîrê dezgeyanê însanî yê armenîyan de bêro bexş kerdene.



Rojnameger û nuştoxo armenî Hrant Dînk

Rakel Dînk peynîya beyanatê xo de va, "Dewleta Tirkîya hetanî ewro tu wezîfeyo ke kewno milanê aye ser nêard ca. Ez hêvîdar a ke ewro ra pey fek helwêsta xo ya ke sucdarî pank û bêsucî mehkum vejena ra verado û sey dewletêk ke xo layîqê wijdanê şarî vînena gaman bierzo."

Seke yeno zanayene rojnameger û nuştoxo armenî Hrant Dînk bi heqaretkerdişê ro tirkîtîye amebi sucdar kerdene û roja 19.01.2007 de Îstanbul de bi suîqestêk amebi kiştene.

**Murad Canşad**

## Waştena Zerrî û Nêwaştene…

Vanê, keso ke zerrîya xo bi karêk esta, ci rê rayîrêk peyda keno; eke çin a, mahaneyêk (bahane) peyda keno.

Ez na qisa kamî ser o vana?

Serekwezîr Erdoganî ser o…

Heqê merikî nêno werdene; xurt o Erdogan, çust o.

Xurt û çustê çiyî yo?

Yê îqtîdarbîyayîşî yo.

Duşte (hemver) hende dek û dolaban de, fend û fêlbazîye de çimê xo îqtîdar ra nêgirewt mêrikî. Cehd kerd, ci rê rayîrêk ney çend rayîrî peyda kerdî; bi serekê beledîya, bi serekê partîye, bi serekwezîr. Wina aseno ke hetanî Çankaya rayîrê xo esto.

Ya, Erdogan rayîrê îqtîdarbîyayîşî zaneno. Zerrîya xo bi nê karî esta.

Ma çarekerdişê meseleyanê Tirkîya?.. Mîsalan, meseleyê kurdan?..

Sereyê Erdoganî de nê meseleyî ser o teba esto çin o, ez nêzanena. Beyenatanê ey ra şan û şodir bellî nêbeno. La o rew-rew bi sitemkarîye vano: Tam ma xo hazir kenê ke gamek bierzê, dest erzenê bi çokan, bombayan teqnenê, hedîseyan vejenê, rayîr bi ma birnenê.

Derê, mêrik rast vano, zerrîya safe ra qisey keno?

Pê yeqîn nêkena ez. Bi nezerê mi, rast nêvano.

De ma hebêk rojanê verênan, hewt-heşt serranê payênan bîyarê xo vîr.

3ê teşrîne 2002 de vîjnayîşê parlamenteran ame kerdene, partîya Erdoganî bîye îqtîdar. Parlamento hema-hema 2/3 înan dest de bî. O wext kesî dest nêeştîbî çokan, bombayê nêteqnayênê; demê "adirbes"î bî. Hetanî key? Hetanî 1ê hezîrane 2004. Yanî 19 mengî kesî bêçîka xo nêkerdîbî linga çeke ser.

Ma o wext Erdoganî se kerd? Meseleyê kurdan ser o persêk ci ra amebî pers kerdene, ey vatîbî: Şima ke mefikirîyê, meseleyêko winasî çin o.

Maşela, Heq linga mêrikî kemere meverdo, çi aqil tede esto!

Tebaxa 2005î de Erdogan şî bi Dîyarbekîr, behsê çîyanê musbetan kerd. Dewletê pîlî ê yê ke xeletîyanê xo vînenê, bi xeletîyanê xo yenê têrî, vat. Naye ser o, hetanî mangêk adirbes ame îlan kerdene.

Erdoganî se kerd? Ci ra veng nêvejîya Kombîyayîşê "MGK" dima doçika xo ser o ronişt. Meylê xo "nêfikirîyayîş"î ser o bî.

Gulana 2007î de serekkomaro newe ameyênê vîjnayene. No vîjnayîş seba çarekerdişê meseleyê kurdan firsendêk bî. Beno ke kêmî bibê zî heqê kurdan yenê dayene, no mesele bêgonî çare beno. Teşrîna 2006î ra hetanî 15ê gulana 2007î adirbes ame îlan kerdene. Tarîxê vîjnayîşê serekkomerî ke bi nêzdî, qisimêke eskeran, nîjadperestan, kemalîstan, ergenekoncîyan û çetecîyan dest bi provakasyonan kerd. Hukmatî qerar grewt ke vîjnayîşê parlamenteranê ke hîna serrêka xo menda, a sere 22 temuze de bêro kerdene. Naye ser o, adirbes zî hetanî tebaxa 2007î ame taloq kerdene. Yanî hetanî 10 mengan eyam sukit bî.

Erdoganî se kerd? "Xanima mi zî başurê rojhelatî ra ya" vat, Emîna Xanime sîyasetî ra kerde malzeme.

Hîna ke 2008 nêqedîyayo, payîz ra meseleyê kurdan ame rojevê Tirkîya. Mesela bi cesaret a ame munaqeşe kurdane, kêmî bibê zî tayê gamê musbetî ameyî eştene. Naye ser o ancî adîrbes îlan bî, hetanî hezîrana 2010î, yanî hetanî 20 mengan ne çekî teqayî ne bombayî…

Erdoganî se kerd? Vejîya bi meydan û vat: Tirkîya ra hes kenê hes bikerê, hes nêkenê; cehennemeyê şima!...

Nika ancî adirbes îlan bîyo. Wextê îqtîdarê Erdoganî de adirbeso pancin… O yo ke nika ra eşkera bîyo, hetanî 20ê êlule eyam sukit o. De goşê ma ser o yo; Erdogan nafa se vano, se keno?... Ancî çi mahane peyda keno?

## Wetenun Medde li Hewlêrê



**Taman Şakir**

Vekirina xwendingehekê li gor min ji sed mizgeftan baştir e. Niha ji ber kêmbûna xwendingehan, zarokên me bi qeflan li sinifan tên bicîhkirin. Êdî li xwendingehan ti rengê demargîriyeke olî û netewî nayê dirustkirin. Lê vekirina xwendingeha almanî pir cuda bû ji vekirina xwendingeheke asayî li Herêma Kurdistanê. Li gor min jî baş e, ji ber dizanim sûdemend dibe, bi kêmanî mînakekê ji sîstemparêziya Alman dibînim, ku alman pê navdar in.

Li Kurdistanê em xwe teklîf dikin û xulekekê bo canê pak ê şehîdan radiwestin, lê di rêûresmên Almanan de ev bend nebû, lê jê balkêştir hebû. Yekem tişt sirûda neteweyî ya Îraqê hat lêdan, rekordê bi Wetenun Medde destpê kir, xelkê jî, wezîr û gizîr jî di nav de, bi rêzê rawestiyan heta xilas bû, ev rêzgirtina mêvanan e. Kesî cesaret nekir poşman bibe û bêje bavo rawestîne ew ne tişteke. Saddam bîreweriya me diherifîne, bi Xwedê ne şerm bû jî, tenê hinek cesaret jê re diviya.

Mamoste Elî Bapîr ji bo sirûda netewî ya Kurdistanê ranabe û li gor wî qet ne şerm e. Ji ber çi divê li gor we şerm be û ewqasî mêvanperwer bin! Yan wek kevneşopiyeke Kurdan we nedixwest mêvanên me biteriqin.

Piştî ku sirûda netewî ya Almanya hat lêxistin û xelk rabûn ser piyan, di dawî de sirûda Ey Reqîb hat lêxistin, di wê demê de te digot ketiye ber lavijên Îslamiyan, dişibiya her tiştî ji bilî Ey Reqîb.

Tiştê cihê nîgeraniyê ye, ji ber çi divê konsolxaneya Alman girîngiyê nede van tiştan, nemaze di helkefteke bi vî rengî de. Tu dibêje ji ber sirûda netewî ya Îraqê ya nû ne 'Mewtinî' be, yan li gor wan Îraq hê nû nebûye û neguheriye.

Du tişt di vê helkeftê de bûn cihê pirsiyara min. Behsa kabîneya şeşem a Hikûmeta Herêma Kurdistanê nehat kirin. Xala duyem ku cihê pirsiyara min bû, çi bi xwendingeha Mamûn Debax a keçan hat û nizanim ev xwendekar wek goştê xêrê bi ser kê de dabeş dikir, da ku ew xwendingeh bibe xwendingeha almanî. Bawer nakim dewlemendên welatê me ewqasî xêrxwaz û niştîmanî bin ku hizra zarokên Almanya bikin û xwendingeheke nû ji keçên me re ava bikin. Alman jî her dibêjin nîne. Loma nirxê xwendina xwendekarekî bexçê zarokan û seretayî 2100 Dolar e di salekê de. Yanî ew jî tenê ji bo zarokên dewlemendên vî welatî ne, wek xwendekarên Şiwêfat û Işik.

Di dawî de dibêjim êdî zarokên me li ber sirûda netewî ya Îraqê ya kevin mezin nekin. Saddam bar kiriye.

# *Divê Tirkiye danûstanê digel 'Fîlê' odeyê bike*

**David Romano**



Dema ez vê gotarê dinivîsim, Serokê berê yê Finlandiya û hilgirê xelata Nobel a Aşitiyê Martti Ahtisaari, li Tirkiyê ye û tevî Hikûmeta Tirkiyê û rêberên Kurdan re rûdine. Ahtisaari û hevalên xwe bi eşkere dixwazin çavdêriya nakokiyên domdirêjên navbera Enqere û grûbên siyasî yên Kurd ên wî welatî bikin û dibe ew çend pêşniyazan jî pêşkêş bikin.

Ahtisaari kesekî xwedî ezmûn û hêjaye, wî beşdarî di çend pirsgirkên ji vê corê de kiriye, ji wan gotûbêjên navbera Kosovo û Sirbiyan, Tevgera Azadîxwazên Aceh û Hikûmeta Endonesya, serperiştîkirina proseya jiçekkirina Sûpayê Komara Îrlandî "IRA". Ev siyasetvan, dîplomatkar û çalakvanê navdar ne dijminê Tirkiyê ye, lê serokê Komîteya Serbixwe ye li Tirkiyê ku ji bo endametiya Tirkiyê ya di Yekîtiya Ewrûpa de dike.

Em hêvîdar in ku Ahtisaari ji karê xwe yê li ser nakokiyên berê, ezmûneke baş wergirtibe ji bo bikare alîkariya serkirdên Enqere bike ku fêm bikin ji bo aramî, aşitî û dahatûya Tirkiyê misoger bikin, pêwîst e ew destberdarê gelek daxwaziyên xwe bibin.

Eger nûnerên IRA beşdarî danûstanan nekiribana bi rêya partiya xwe ya siyasî ya fermî ku ew jî Sinn Féin bû, lihevhatina Belfast jî qet nedibû, herwiha gotûbêjên li Kosovo û Balkanê jî ku hemû aliyên nakok li xwe girtibûn. dîsan ji bo çareseriya nakokiya navbera Filistîn û Îsraîlê, eger ku Îsraîlê Filistîn û Tevgera Rizgarîxwaza Filistînê "PLO" bi fermî ne naskiriba û her cext li ser axaftina digel Urdiniyan bikira? Em qet nedigihiştin lihevhatina Oslo (Ew li hevhatin tenê wê yekê tîne bîra me ku danpêdana dualî pêwîst e)

Bêguman hin xwandevanên Tirk niha dijî vê yekê radiwestin û amaje didin wê yekê ku ew dosya hemû cuda ne û cênabe Hikûmeta Tirkî danûstanan bi teroristan re bike. Bila em niha wê yekê bidin aliyekî ku di vê nakokiyê de Enqere çendîn caran mêvandariya serkirdên Hemas ê kiriye û çendîn gund jî şewitandin e. Rastiya mijarê ew e ku hertim hikûmet danûstanan bi teroristan re dikin. Ew hîngê vê yekê didin pêşt heta ku hemû tiştên din test dikin û tê de sernakevin, êdî îmkanên wan ên dawî anîna şer tune. IRA çendîn teqîn li Brîtanya encamdan, lê Brîtanya di dawiyê de bi wan re rûnişt. PLO firoke revand, li Olympmpiyada Munchenê de êriş kirin ser werzişkarên û teqe li bus a qutabiyên Îsraîlî kirin, lê Îsraîliyan danûstan bi wan re sazkirin û razî bûn ku Kerta Rojava û hemû Xezzeyê jî bidin destê wan. Brîtaniyan, Îsraîliyan û yên din jî ew yek fêm kirine ku ew nikarin nûnerên xelkên din destnîşan bikin, herwiha danûstana bi wan nûneran re, nayê wateya ku pêwîst e tu ji wan hezbikî.

Gelo PKK nûnertiya Kurdên Tirkiyê dike? Min li Tirkiyê zêde xelkên Kurd û Tirk jî dîtine û ez bi wan re axivîm, ew bi vê yekê ne bawer in û ew digel DTP ku niha bûye BDP na axivin jî, ji ber ku ew bawer dikin ku ew partî rûyê siyasiyê PKK'ê ye û belgeyên wan jî hene. Ev tişt jî pirseke giring tîne rojevê: Ew bi milyonan kesên ku di hilbijartinên borî yên Tirkiyê de dengê xwe dane DTP kî ne û çima dengê xwe dane? Li Tirkiyê partiyên din ên Kurdî hene, lê bê ku peywendiya wan bi PKK'ê ve hebe, lê em nabînin ku nûnerên wan di şaredariyên Rojhilatê Tirkiyê de serkevin. Xoş be yan tirş, PKK bi rêya aliyên xwe yên siyasî BDP/DTP nûnera sereke ya siyasî ya Kurdî ye li Tirkiyê. Ev rastiya mantiqî, pêwîst û tal jî ji Enqerê re eşkere dibe ku bêyî beşdariya PKK ti çaresereke siyasî yan "vebûneke kurdî" serkeftî nabe. Dibe çareseriyeke hebe ku Kurd pê razî bibin, lê serkeftî nabe, ji ber ku bi baweriya serkirdên PKK'ê wan jiyana xwe nekiriye qurban û çendîn salan li çiya nemane ji bo ku ti dahatûyeke wan di Tirkiyê de tunebe. Vêca ev mesele hizirkirineke xweperistî be yan jî ewe be ku baweriya wan bi kesên din nayê ku rêberiya xelkê wan bikin, ew serkirdên PKK'ê hemû çareseriyên ku lêborînê ji wan re naîne û dahatûyekê nade wan, red dikin.

Tiştê baş ji Enqere re ew e ku êdî daxwaziyên PKK'ê ne giran in. Heta Brîtanî, Îsraîlî û Spanî jî neçar bûn sînorekê ji daxwaziyên IRA, Hemas û ETA re danin. Abdulla Ocalan, Murad Karayilan û serkirdên din ên PKK'ê ew hemû ji daxwaza dewleta serbixwe daketine û dibêjin ku ew amade ne çekên xwe danin, eger lêborîneke giştî ji wan re bê dayîn û reformeke siyasî ya dirust bê encam dayîn. Ew reform jî divê bi heman şêweyê otonomiya Katalonya be. Herçawa be ev hûrbînî wê yek ji wan xalan bin ku di rûniştinên nehênî de li Enqere bi dijminên xwe re behsa wan bike, dema ku bi wan re dest bi gotûbêjên ciddî dikin.

Di encama referendûma hefteya borî de, Serokwezîrê Tirkiyê, Receb Teyib Erdogan, deskefteke mezin a siyasî bidest xist. Wê karekê baş bike eger ew bi alîkariya kesên hêja yên weke Ahtisaari wê bihêzbûna xwe ya siyasî ya nû ji bo amadekirina Tirkan bikarbîne ji bo ku bi 'Fîl'ê nav odeyê re bikeve danûstanê. Ji xwe eger di meseleya dîtina 'Fîl' de pirsgirêkeke wî hebe, wê demê dikare tenê wê pirsê ji xwe bike ka boçî tenê ji sedî 33 rûniştvanên navçeyên Kurdî beşdarî referendûmê kirin, di demekê de ku li rojavaya Tirkiye rêjeya beşdarbûyan gihişt nêzîkî ji sedê 80. Gelo peywendiya vê bi wê yekê ve heye ku xelk guhê xwe didin nûnerên xwe yên destnîşankirî û daxwaz ji wan hatiye kirin ku referendûmê boykot bikin?

# *Ehmedê Kurd rast dibêje*

**Kawe Emîn**



Di wê hevpeyvîna ku rojnameya Rûdawê li gel Ehmed Turk kiribû, min tiştekî balkêş derbarê bêcesaretbûna AKP'ê derheqê çareserkirina pirsgirêka Kurd de xwend. Ehmedê Kurd dibêje: "Ger baweriya wan hebûya, bi cesaret jî dibûn, siyaset wiha ye, ger baweriya te bi tiştekî hebe, cesareta te jî peyde dibe." Ligel vê axaftinê hemfikir im, ji ber ti tişt bê dayîna qurbaniyan nayê kirin. Swêdî pir caran li ser tiştên hestiyar, çi şexsî be yan dewletî, dibêjin divê mirov girîngiyê bide tiştê ku li gor wî girîng e. Lê Erdogan û partiya wî pirsgirêka Kurd nakin pirsa xwe ya herî girîng, lê bêtir wek paşkoyekê behs dikin û ew jî pir caran ji bo bidestxistina dengên Kurdan di hilbijartinan de. Di referendûma 12'ê Îlonê de, hem BDP'ê û hem jî PKK'ê cesareteke mezin pêşan dan, dema ji gelê Kurd xwestin ku referendûmê boykot bikin. Ji alîkî din AKP'ê heman kar kir ku herdu alî bi awayên xwe serkeftineke mezin bi dest ve anîn.

Herdu serkeftin jî di qazanca gelê Kurd de bûn, lê çawa? Bizava azadîxwaz a Kurdî, bi çiya û bajar, hêza xwe hem bo Tirkiyê û hem jî bo cîhanê pêşan da, bi awayekî ku êdî ne mimkun e nûnerayetiya Kurdan bê paşguhxistin. Ji alîkî din jî hinek xalên destûrê ku gelê Tirkiyê ji wan re gotin 'erê' di berjewendiya Kurdan de ye. Erdogan bi awayekî veşartî be jî mikur hat ku nabe hisab ji boykota Kurdan re neyê girtin. Loma dibe hem boykot û hem jî sererastkirina van 26 maddeyên destûrê wek pencereyeke vekirî bi rûyê çareseriya aştiyane ya pirsgirêka Kurd li Bakur bê dîtin. Paşkezbûna partiyên nijadperest wek MHP û CHP'ê ku niha li Bakurê Kurdistanê tenê tabloyên wan mane, ku ev çend deh sal in darûdestên Artêşa Tirk in, şikestineke mezin e jî bo generalan û mîlîtarîstan li Tirkiyê ku dîrokeke wan a xwînrij heye.

Çavê AKP'ê ne tenê li ser Kurdistanê ye, lê li ser Balkan û jimareke zêde ya welatên Rojhilata Navîn e jî. Ger li xwe venegerin û hewl nedin Pirsa Kurd bi awayekî aştiyane çareser bikin, bê goman wê rastî heman çarenivîsa partiyên nijadperest li Kurdistanê bên. Lê pirsiyara herî mezin ew e wê kengî vê cesaretê peyde bikin?

Niha xebata tevgera Kurd li Bakur ketiye ser rêyeke rast, loma wek Ehmed Turk jî dibêje, divê AKP hemû hincet û xwevedizînekê ji holê rake û demeke din jî agirbesta yekalî dirêj bike, ji ber êdî Kurd ji hêza xwe piştrast e. Ji xwe ji vê xalê şaredarê Bajarê Mezin ê Amedê Osman Baydemir berî referendûmê merc kir eger Kurd referendûmê boykot nekin, ew ê îstîfa bike. Ji ber ger wiha bûye, wek wî bi xwe jî got, wê ne hêjayî nûnertîkirina xelkê bûya. Ev jî cara yekem e siyasetvanekî Kurd wek Ewrûpiyan bike, dema di hilbijartinan de wenda dikin kursiyên xwe ji bo kesên din vala bike. Lê gelê Kurd pêşan da ku keleha Baydemir ewqasî bihêz e ku ne bahoza Îslamî ya Tirk û ne jî gefên şovenîstan kevirekî wê ji cih ranakin, ji ber di referendûmê de li Kurdistanê 'boykoy' û li Tirkiyê 'erê' bû.



# Hewlêr dixwaze di fûtbola Asya de bilîze

Ji ber ku sala borî Tîma Fûtbola Hewlêrê mafê beşdarîkirina di Kupa Yekîtiya Asya de wendakir, niha Yekîtiya Fûtbola Îraqê hewl dide îsal wî mafî ji Tîma Hewlêrê re vegerîne.

Hewlêr-Rûdaw

Tevî ku îsal Tîma Fûtbol a Hewlêrê pileya çaremîn a Lîga Tîmên Nayabên Îraqê (Lîgaya Herî Bilind) bi dest xist û mafê xwe yê beşdarîkirina di kupa Yekîtiya Asya de wenda kir, lê ji ber ku sala borî rê ji ti tîmên Îraqê re nehat dayîn ku beşdarî bikin û Tîma Hewlêrê jî weke şampiyonê Îraqê ji wî mafî hat bêbeş kirin, niha Yekîtiya Fûtbola Îraqê dixwaze weke bedelekê bide tîmên Îraqê û wiha bike ku îsal Yekîtiya Fûtbola Asya li şûna du yaneyan rê bide 4 tîmên Îraqê ku beşdarî wê şampiyoniyê bikin.

Di vê derbarê de Berpirsê Ragihandina Tîma Fûtbola Hewlêrê, Saman Birîfkanî ragihand ku Yekîtiya Fûtbola Îraqê ji bo vê armancê bi fermî daxwaz ji Yekîtiya Fûtbola Asyayê kiriye û got "rast e ku Yekîtiya Fûtbola Îraqê bi fermî daxwaz ji Yekîtiya Fûtbola Asya kiriye ku li şûna 2 tîman, îsal 4 tîmên Îraqê beşdarî wê şampiyoniyê bikin, lê heta niha Yekîtiya Fûtbola Asya bersiv nedaye û em hêvîdarin ku ew razî bibin." Eger Yekîtiya Fûtbola Asya ew daxwaziya Yekîtiya Fûtbola Îraqê qebûl kir, wê demê her çar tîmên Duhok, Telebe, Zewra û Hewlêr wê di lîgên navnetewî de nûnertiya Îraqê bikin.

# Êdî doktorê Diyabakirsporê heye!

**Amed (Rûdaw) -** Tîma Diyarbakırsporê ku di Lîga 1. ya Bank Asya de dilîze pirsgirêka tunebûna doktor ku ji serê sezonê heta niha dom dike, çareser kir. Ji niha û pêve êdî doktorekî taybet ê Diyarbakirsporê heye. Lê di çar maçan de hîn ti serkeftinek bidest nexist.

Jiber ku doktorê tîmê tunebû di maçên navbera Diyarbakirspor û Çaykur Rizespor û Diyarbakirspor û Akhisar Belediyespor, 10 hezar TL ceza hatibû birîn. Klûba Kesk-Sor bi Dr. Serkan Gurcan re peyman îmze kir. Gurcan ortopedîst e û herwiha li Zanîngeha Dicleyê Fakulteya Tipê dixebite.

Li aliyê din ji bo çareseriya pirsgirêkên aborî rêvebirên klûba Diyarbakirsporê li çavkaniyan digerin. Hate zanîn ku hevdîtinên ku bi çendîn sponsoran re hatine kirin, erênî derbas bûne.

Klûba Diyarbakirsporê beriya Cejna Remezanê bi qasî 400 hezar TL pere ji sponsoran standibû û ev pere jî ji bo prîmên lîstikvanên ku di maça Akhisar Belediyesporê de lîstibûn, hate xerckirin. Klûb niha jî bo pêdiviyên lezgînî li çavkaniyên nû digere û ji bo vê jî çendîn hevdîtinan çêkir.



Diyarbakirspor ji Mersînê jî bê pûan vegeriya

Ji bo reklamên li ser formayan demek berê Klûba Diyarbakirsporê bi Fadil Akgunduz re peyman îmze kiribû û niha jî ji bo reklamên nava sahê bi çendîn firmeyan re hevdîtin li dar dixe. Klûb hewl dide xwe ku bi pereyên reklaman miaşên lîstikvanan bide wan û mesrefên din çareser bike. Hesreta Diyarbakirsporê a 3 pûanan hê jî didome. Maça li hemberê Mersîn Îdmanyurdû a roja yekşemê li Mersînê 0-1 bi dawî bû û Diyarbakirspor bê puan vegeriya Amedê. Di maçê de di deqeya 49.an de lîstikvanê Diyarbakirsporê Onder Çengel kerta sor wergirt û piştî 8 deqeyan lîstikvanê Mersîn Îdmanyurdu Yunus Altun gol avêt.

# Di derbiya Gelsenkirchenê de BVB keniya



**Gelsenkirchen (Rûdaw) -** Du tîmên cîranê hev, lê herwiha dijberên hev, Schalke 04 û Borussia Dortmund vê heftê disa hatin hemberê hevdu. Di lîstika çaremîn a Bundeslîga de ku li Gelsenkirchenê di saheya Schalkê de hat lîstin, Dortmund 3-1 biserket.

Schalke di çar lîstikan de hê ti serkeftin bidestnexistiye û pûanên wê tuneye, Dortmund jî tevî vê lîstikê puanê xwe gihand 9'an.

Encamên lîstikên Schalke 04 û Borussia Dortmund di 18 lîstikên dawî yên ku li Schalke hatine lidarxistin, wiha ne: 6 car Schalke, 4 car BVB biserketine û 6 çar jî wek hev mane.

Schalkeya ku sala borî bi pûanekî şampiyoniyê winda kir ji aliyê antrenorê bi ezmûn Felitz Magath ve tê birêvebirin. Serkeftina vê heftê bû yekem serkeftina Jurgen Klopp a li himberê Felix Magath. Schalke niha di lîga şampiyonan de, BVB jî di Lîga UEFA de dilîze.

# Aynûr ji bo mafê dengbêjiyê distre






**Madrîd (Rûdaw) –** Hunermenda Kurd Aynur Dogan yek ji 12 hunermendên jin e ku ji bo projeya nû ya kompositorê Spanî, Javier Limon, hatibû hilbijartin. Projeya bi navê "Mujeres de Agua" ku bi kurdî tê wateya "Jinên ji Avê" dengbjên jin ên Îranî bi bîr tîne, dengbêjên ku hatine bêdengkirin û rastî zordariya rejîmê tên.

Ji bilî dengbêja Kurd, 11 dengbêjên navdar jî di vê xebatî de cih digrin, wek dengbêjên hunera Flamênko Carmen Linares û Estrella Morente, herwiha stêrka hunera Fado ya Portûgalî Marîza, dengbêja Yewnanî Elefteria Arvanitaki, ya Îsraîlî Yasmîn Levy û hwd.

Derbarê vê projeyê de hunermendê Spanî Javier Limón dibêje ku wî xwestiye hunera Flamênko tevlî mûzîka rojhilatî bike: "Min dixwest ku dengbêjeke Îranî jî di vê projeyê de cih bigre, lê ji ber ku stranbêjî li Îranê ji jinan re qedexe ye, min dixwest ku vê xebatê diyarî wan bikim.

Albûma Jinên ji Avê di 21'ê Îlonê de tê belvakirin. Hunermendên jin wê stranan bi awakî zindî li Madrîd, Lissabon, Atîna, Stenbol, Parîs û li DYA'yê bixwînin.

# Ger Heval bibe milyoner, wê 4 zarokan çê bike



Hunermend Heval Îbrahîm ragehand, ger bibe milyoner ew ê 4 zarokan çê bike. Heval: "Wê heyamê wiha bû, her kesî hez ji zarokên gelek dikir, lê niha dem hatiye guhertin, ger bibim xêzandar ez tenê du zarokan dixwazim."

Heval Îbrahîm got ku ger du zarokên wî hebin, ew ê bikaribe wan bi awayekî baş perwerde bike, lê ger rewşa wî ya aborî xweş bû û bû milyoner ew ê 4 zarokan çê bike. Hunermendê ciwan Heval Îbrahîm hê jin ne aniye, lê di hevpeyvînekê ligel Rûdawê berî demekê gotibû ku ew evîndar e û hêvîdar e bigihe yara xwe.

# Li Kolnê konên çandê vekirin!



Wêne: Jîr Ax Koln

18. Fesivala Çanda Kurd ya Navnetewî roja 18'ê Îlonê li bajarê Almanya Kolnê hat lidarxistin. Bi deh hezaran kes îsal jî di festivalê de kom bûn û daxwaziya çand, huner û zimanê xwe kir.

Bajarê Kolnê roja şemiya borî ji Kurdan re malavanî kir. Bi hezaran Kurd ji gelek bajarên Ewrûpayê birêketin û li Kolnê li Stadyûma Rhein Energie civiyan. Serê sibê ji gelek welatên Ewrûpayê jin, keç û xortên Kurd hatin vî bajarî. Bi rengê kesk, sor û zer bajarê Kolnê hat xemiladin. Keç û xortan, li ber dengê Dîno, Koma Berxwedan bi saetan bi coşî dîlan girtin. Jî bo nasnamaya xwe gelek peyamên balkêş û herwiha mesajên sîyasî dan. Siyasetmedarên wek Emine Ayna, Serokê KNK'ê Tahir Kemalzade, Serokê YEKKOM'ê Ahmet Çelik tevlî festivalê bûn û axifîn. Serokê KCK'ê Murat Karayılan jî bi rêya sinevizyonê tevlî festivalê bû. Peyama sîyasetmedarê Kurd bi kirtahî, li şermezêkirina bûyera Colemergê û rexnekyên li ser helwesta Dewleta Tirk bû. Di vê festîvalê de tiştê herî balkeş jî konên TEV-ÇAND'ê bûn.

## Xaçepirs




**Çeperast:** 1- Xeniqandin, bi şerîtê kuştin. 2- Dengê dewaran - Bi hinek zimanên Ewrûpî ji "şêr" re tê gotin – Kesê yekem. 3- Karkir, kedkar – Mizgeft, îbadetxaneya misilmanan. 4- Di Sumeran de xwedayek – Di artêşê de payedarîyek. 5- Pronavê yekem – Xwedî sûd, xwedî şand – Na, no. 6- Bi rêve çûn (berepaş) – Damar, reh – Terpilî, li erdê rast bû. 7- Kom, bar, qefl (berepaş) – Pirtûk lê tên raxistin (berepaş). 8- Du tîpên bê deng – Pronavê yekem – Li hedefê xistin, nîşana rast. 9- Heywanek, keroşk (berepaş) – Agahdarî, bang. 10- Dezgeha parêzeran (berepaş) - Cûreyek hesin (berepaş).

**Serejêr:** 1- Şorbeyek şîrîn. 2- Qebûlkirin – Navdar, şandar. 3- Tuneye – Ne nêr, jin – Heywanek. 4- Fêkîyek – Kîn, nefret. 5- Zik, çerm – Notayek. 6- Kêfçî, alhildêr – Ne tûj, nabirre. 7- Dîtin, fikir, temaşe – Amnestî Înternatîonal. 8- Notayek – Maçkirin. 9- Fêkîyek – Dinya bi mirin, ne ebedî. 10- Nîşana millet û welat – Terî, dûvik. 11- Bi emanetî, bi deyn. 12- Êşkence, eza, cefa – Hêzên Artêşa Tirkiyê.

# Li dinyayê kesê herî bêvil mezin lazekî ji Tirkiyê ye



Mehmet Ozyurekê ji Derya Reş, ku bi eslê xwe Laz e, li gor pirtûka rekoran Guinness, xwediyê mezintirîn bêvila li cîhanê ye. Pirtûka ku ji seranserê cîhanê rekoran nîşan dide, Guinness, ji bo sala 2011 Mehmet Ozyurek weke bêvildirêjtirîn û mezintirîn kes destnîşan kir. Pirtûk dinivisîne ku dirêjiya bêvila wî 8.8 cm ne.